

ÇAPA EWROPA

# RÛDAW

ROJNAMEYA KURDÊN DIYASPORA

*Nazdar diçe ser kaniyê*

» 9



## Ji bo şerê Kurdan ji Holendayê diçin Rojava

لا إله إلا الله محمد رسول الله

# » KURD IN
# » CÎHADÎ NE
# » DIJMINÊN KURDAN IN

6 »

Hejmar / Nr. 210
8 Tebax / August 2013





| | | |
|---|---|---|
| Deutschland | 1,50 | Euro |
| Österreich | 1,50 | Euro |
| Belgium | 1,50 | Euro |
| Danmark | 15,00 | DKK |
| France | 1,50 | Euro |
| Nederland | 1,80 | Euro |
| Norway | 15 | NOK |
| Schweiz | 2,70 | CHF |
| Sverige | 21,00 | SEK |

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Ciwan Haco:**

### Êdî ji bo Rojavayê Kurdistanê stran bes in

» 9

**Wezîrê derve yê berê yê Tirkiyeyê, Yaşar Yakiş:**

### Roj hatiye ku pirsa kurd li Tirkiyeyê bê çareserkirin

» 11

## “Kurdê mihelmî“



# Bi telefonê qêwitiya diziya telefonan dikir

**Köln (Rûdaw) -** Dema dibû tarî, hêsinên li ser qulên kanalîzasyonê radikirin û li camên dikanên telefonên destan dixistin û cam dişikandin. Dûre jî diketin hundirê dikanê û telefon ji xwe re kom dikirin. Firotina telefonên ku didizîn jî hesanî bû; Kurdekî ji Libnanê ew telefon ji wan dikirrîn û ji xwe re difirotin.

### Bi 100 hezar Euro telefon dizîn

Pêncşema hefteya derbasbûyî li dadgeha eyaletê ya bajarê Essenê rûniştineke balkêş hebû: “Kurdê mihelmî“ yê 27 salî li hember dadweran rûniştibû. Li gor îdianameyê, Kurdê ku li bajarê Uckendorf yê eyaleta Nordrhein Westfalên ya Almanyayê rûdine, ne tenê telefonên destan ji dizan dikirrîn. Wî herwiha ji dizan re digot ka pêdiviya wî bi kîjan marqeyên telefonan heye. Bi vî awayî diz diketin rê, hêsinên giran yên li ser devê qulên kanalîzasyonê radikirin û li camên dikanên telefonan dixistin û bi vî awayî derengiya şevê diketin hundirê dikanan û telefonên pêwist berhev dikirin. Bersûc heta niha îfadeya xwe nedaye, ji ber ku xwendina îdianameya dirêj a sûcên bersûc hêj neqediyaye. Li gor îdianemeyê, vê şebekeyê yekem car di 28ê Tebaxa par de dizî kiriye û heta Sibata îsal bi giştî bi bihayê 100 hezar Euro telefonên destan û tablet dizîne.

### Bi telefonê qewêtiya diziyê dikir

Piştî bûyerên diziyê bi heman şêweyî li ser hev dubare bûn, Daîreya Krîmînaliyê ya Eyaletê dikeve şikê ku diz “Kurdên mihelmî“ bin. Dûre li axaftinên wan yên telefonê tê guhdarîkirin. Polîs dibe şahidê wê yekê ku kesê 27 salî bi rehetî bi rêya telefonê ji dizan re qewêtiyên xwe yên telefonê dike. Li gor agahdariyên polîs, heman dizan roja 1ê Çileya îsal ji dikana bi navê Base-Shop a li cem rawestgeha navendî ya bajarê Gelsenkirchenê bi buhayê 15 hezar Euro telefon dizîn. Heman şebekeyê ji dikana Telekomê jî bi heman şêweyî di 9ê Çile de bi buhayê 15 hezar Euro telefon dizîn. Û ev jî ne bes, piştî 6 rojan dîsa ji heman dikana ku camên wê bi textên ewlehiyê hatibûn asêkirin, carek din bi buhayê 25 hezar euro telefon dizîn.

Hejayî gotinê ye ku li Almanyayê gellek kesên ji Libnanê, ku tevlî karên krîmînal dibin, xwe weke Kurdên Libnanê, anjî Kurdên Mihelmî didin nasîn. Lê di jiyana xwe ya normal de ew xwe weke Kurd nabînin û bi erebî diaxivin.

## Jin bi dest dirêjtirîn Kurdê cihanê nakeve

**Hewlêr (Rûdaw) –** Dirêjtirîn mêr di cihanê de, ku Kurdekî şêniyê Bakurê Kurdistanê ye, dibêje ku di jiyanê de du xweziyên wî hebûn. Yek ji wan dirustkirina xaniyekî li gor bejna wî, ku ev yek niha pêktê, hêviya duyem jî jinanîn e, ku hêj pêk nehatiye.

Sultan Kosen bi bejna 251 sentîmetre sala 2008ê ketibû pirtûka Guinness ya rekordan. Sultan di hevpeyvîneke ligel Rûdawê de diyar kir ku ew pirr dilxweş e ku navê wî ketiye wê pirtûkê, lê dibêje ku dirêjbûna wî pirsgirêk jê re dirust kiriye, bo mînak gava dixwaze li otomobîlan siwar bibe.

Sultan Kosen kêfxweş e ku piştî çend salan dibe xwediyê odeyeke taybet ku li gor dirêjiya wî be û dibêje ku du hêviyên min hebûn, yek ji wan bi cih hat, ya din jî jinanîn e, ew jî qismet e û hewldanê jê re dike.

Sultan Kosen ji malbateke kurd li bajarokê Dêrika Çiyayê Mazî ya ser bi Mêrdînê ji dayik bûye. Sê xwişk û birayekî wî hene. Sultan heta 10 saliya xwe bi awayekî normal mezin bûye, lê dûre bi awayekî ne normal geş bûye.

## Nijadperestan êrişî mala Kurdekî û hevala wî kirin

**Berlîn (Rûdaw) -** Nijadperestan li gundê Velgast yê eyaleta Mecklenburg Vorpommern ya Almanyayê êrişî mala Kurdekî û hevala wî ya Alman kirin. Dema şeva yekşema hefteya borî Kurdê bi navê Neşwan û hevala xwe Natali li malê rûniştibûn, nijadperestên alman êrişî malê kirin.



Li gor agahdariyên ciwanê kurd yê bi navê Neşwan, ku bi eslê xwe ji Başûrê Kurdistanê ye, 9 kesên nijadperest yên alman êrişî mala wan kirin. Herwiha di nava êrişkaran de jinek jî hebû. Neşwan derbarê bûyerê de wiha axivî: “Koma Naziyan 2 gule berdan deriyê me û piştre pencereyên xênî jî şikandin. Ez û hevala xwe neçar man ku em xwe di serşoyê de veşêrin.“

Hevala Neşwan, Natalî, jî diyar kir ku êrişê 35 deqîqeyan dom kiriye û piştî polîs hatine, nijadperest reviyane. Piştî bûyerê, roja duşemê, polîs hinek êrişker kirin bin çavan lê ew piştre serbest berdan.

Digel ku Neşwan û Natalî doz li êrişkeran vekirine, ew bawer nakin ku ji dozê encameke erênî derkeve. Ji ber vê egerê jî ew dixwazin ji gund bar bikin û mala xwe bibin Berlînê. Ciwanê kurd Neşwan bi xwe hemwelatiyê Fînlandê ye û ev derdora mehekî ye ku bi armanca ku êdî bi hevala xwe re bijî li cem hevala xwe li Almanyayê niştecih bûye.



Rûdaw
Rojnameyeke siyasî û heftane
**Xwedî**
Rudaw Media GmbH
**Sernûser**
Ako Mihemed
ako@rudaw.net
**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nesredin@rudaw.net
**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu
**Rêveberî û belavkirin**
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net
**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çîftçî
**Marketîng û reklam**
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net
**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany
**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-58 87 22 80
Fax: +49 (0) 221-58 87 22 82
info@rudaw.eu
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de
Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.



# Doza Ergenekonê bizdand

Selahattin Çelik




5ê Tebaxê cezayên doza Ergenekonê hatin xwendin û bersûcan cezayên giran, ku di xewna xwe de jî nedifikirîn, standin. Bersûc ji general û kevnesererkanê giştî, parlementer, birêvebirên polîs, nivîskar, rojnamevan, sendîkavan, mafya, kujer û yên din pêk dihatin.

Wan kesan ji bo ruxandina desthilata AKPê bi navê Ergenekonê rêxistineke derzagonî ava kiribûn. Qurmê rêxistinê digihişt serkantiya giştî ya artêşê. Ergenekonê bi êrişên kontergerîlla û propagandaya psîkolojîk dixwest hikûmeta AKPê hilweşîne.

Di destpêka xebata Ergenekonê de, hima hima hemû dezgehên dewletê wek artêş, bûrokrasî, polîs, dadmendî, çapemenî, MIT û yên din di destê wan de bûn (serdema 2003-2007). Ji wê yekê ji xwe gellekî bawer bûn û zêde qure bûn. Lê AKPê gav bi gav ev dezgeh bi dest xistin. Jixweewleyî, serdestî û pêşdestî cih guhertibû.

AKPê dadgehên bi destûrmendiyên taybet damezrandin. Dozger û dadgeh bi hikûmetê ve girêdayî bûn. Bêyî şik û guman; darizandin û ceza siyasî bûn, ango dadgeh alîgir bûn. Lê li vir, ji bo me Kurdan, mijar divê qet ne ev be.

Di penç salên dawî de, bi tawanbariya endambûna Ergenekonê, bi sedan general, efser, polîs, siyasetmedar û yên din hatin girtin. Hejmar hewqas zêde bû, ku tirs hebû ku hikûmet di bin wî barî de bimîne. Ji zêdeyiya girtiyan, bi gellek navan dozên Ergenekonê hatin vekirin. Ya mijara şiroveya me, ya yekemîn e û ya herî mezin e. Biryarên dozên din jî, hêj di rê de ne.

AKPê du rojan beriya cejna olî ya Remezanê ceza dan ragihandin. Bêguman ev bi mebest bû. Ji bo gellekan tolstandina derbeya leşkerî ya 27.05.1960ê û ya daleqandina serokwezîr Adnan Menderes û hevalên wî bû. Ev aliyê bûyerê jî divê ne xema me Kurdan be.

Bi cezayên dadgehê ev encam misoger e: AKP û komên li pişt, ango yên kevneparêz û olî, di her qadê de derbeya mirinê li komên kevneşop yên Kemalîst dan. Êdî gellekî zehmet e ku bikaribin rabin ser piyên xwe. Kemalîst bi xwe kevneperest in, li dijî demokrasiyê ne. Herçiqasî komên Kemalîst wê li ber xwe bidin jî, êdî girseyên gel wisa bi hêsanî nadin pey wan. Jixwe ji Kurdan heya bêjî dûr in, an jî Kurd ji wan.

Cezayên dadgehê ji bo artêşê jî hişyariyek e ku careke din neqeliqe derbeyan.

Doza Ergenekonê nakokiyên herdu partiyên heya mirov bêje kûr kir. Weke dixuye, yên ku vêga winda kirine neteweperestên Kemalîst in û yên serdest partiya kevneparêz û olî ye. Di pêşerojê de wê çi bibe? Mirov ji îro ve nikare vê bibîne, lê ya diyar ev e ku wê şerê wan gellekî dijwar bibe. Divê em ji bîr nekin; şerê herdu partiyan ne yê demokrasîxwaz û -nexwazan e.

Dibe ku bûyerên dawî, yên herêmî û xwepêşandanên li Tirkiyeyê û yên din jî, bandor li biryarên dadgehê kiribin. Kî zane? Dibe ku AKPê peyam dabe hêzên xwedêgiravî li pişt xwepêşandanan û daxwazên derbeyên leşkerî jî. Kûrbûn û dijwariya nakokiyan bandora faktorên derveyî jî bi xwe re tîne.

## Ji bo me Kurdan wateya doza Ergenekonê

Em him aligirê vî şerî ne, him jî ne. Ne, ji ber ku şerê wan tene yê desthilatdariyê ye. Erê, ji ber ku bersûcên Ergenekonê rasterast kujerên Kurdan in. Dixwazim hin mînakan rêz bikim:

**Kevnegeneral Veli Kuçuk** *du caran cezaye muebedê stand, serokê JITEMê bû. Di kuştina bi sedan Kurdan de destê wî heye. Di kuştina karsazên kurd de cih girtibû (1993-1995). Xwe weke şêxê nîjadperestan dihesiband û heya girtina xwe jî kujer diniqandin.*

**Arif Dogan** *47 sal 3 meh ceza stand, kevneefser e û yek ji damezrênerê JITEMê ye. Li Mêrdîn, Batman, Şirnex û Sêrtê mêrkujiyên wî nayên hejmartin. Heya dawiyê kujerên aşarte weke ganekan bi xwe re digerandin.*

**Ibrahim Şahin** *30 sal 2 meh ceza stand, birêvebirê polîsên tîmên taybet bû. Di salên 1980an de li Sêrtê xebitî bû. Nîjadperest e. Têkiliya xwe bi MHPê re venedişart. Yek ji revebirên koma taybet a Mehmet Agar bû. Destê wî heya enîşkê bi xwîn e.*

**Atilla Ugur** *29 sal 3 meh ceza stand, kevneserheng e, di tîma ku Ocalan girtî de cih girtibû.*

**Levent Ersoz** *22 sal 6 meh ceza wergirt, kevnegeneral e. Li herêma Şirnexê mabû, ji gellek komkujî û ji bûyerên windakirinê berpirsyar bû. Li Şirnex/Basayê ji gulebarankirin û şewitandina 11 gundiyan berpirsiyar e (14-15.01.1996). Li Silopiyê rayedarên HADEPê Serdar Taniş û Ebubekir Deniz bi fermana wî hatin girtin û windakirin (21.01.2001).*

**Semih Tufan Gülaltay** *12 sal ceza stand, plangêrê birîndarkirina Akin Birdal e (12.05.1998/Enqere).*

**Dogu Perinçek** *117 sal standin. Demeke dirêj weke hevalbendê Ocalan di nav Kurdan de digeriya. Heya ku piştî girtina xwe jî Ocalan ji “dostaniya” wî bawer bû û hewl dabû ku pê re têkiliyan damezrîne.*

**Yalçin Küçük** *jî 86 sal standin, mirov dikare weke kevnehevalekî Ocalan bihesibîne. (Tiştekî sosret e ku hê jî PKK di vê bareyê de pêdivî nabîne ku daxuyaniyekê bide.)*

Ji ***Sami Hoştan***ê bazirganê tiryakê (10 sal), ***Sedat Peker***ê MHPyî (10 sal), tilîkeşê Ergenekonê ***Alparslanê Arslan*** (du caran muebeda giran + 20 sal, ku ji binemaliya xwe kurd e), heya ***Fikri Karadag*** (kevneserheng, muebeda giran, ku bi fermî neyartiya Kurdan dikir) û bi dehan bersûcên din…

Bîrdoziyekê, hêzekê ev însanên ji çepgiriyê heya nîjadperestiyê, arteşperestiyê û mafyatiyê anîbûn cem hev. Û dibe ku AKPê lîça Ergenekonê ji bo darizandin û bêbandorkirina dijberên xwe bi kar jî anîbû. Lê çi be jî, taybetmendiyeke hevpar a bersûcan hebû: Hemû neyarên doza kurd bûn. Zêdeyiya wan tevlî komkujiyên Kurdan bibûn.

Divê em rastiyê bêjin, ku di şertên heyî de meyê ti caran nekaribûya ev kesana bidana girtin, darizandin û cezakirin. Eger ev kes azad bûna, ti şik û guman tine ye ku vêga karên wan wê kuştina Kurdan bûya. Dibe ku AKP di pêşerojê de karesatan bîne serê Kurdan. Lê îro divê em bi girtin, darizandin û cezakirina van kujeran dilxweş bin. Bila hinekî jî dayîkên wan bigirîn. Ka girtin, êş û keser çi ye, bila ew jî fêr bibin.

Ez bizivirim şerê kûr yê di navbera AKPê û hêzên Kemalîst de. Wê herdu jî bixwazin Kurdan bikişînin aliyê xwe, lê wê ji neyartiya Kurdan zûbizû neyên xwarê. Divê di pêşeroja nêzîk de, bi siyasî mirov li benda guhertinên mezin be.



Wêne: Rûdaw

Ebdo li ser sînorê Rojava û Bakurê Kurdistanê li Serê Kaniyê

## Şervanekî YPGê bi niyaz e

# Di cejnê de gul û şîranî didim leşkerên tirk

**Serê Kaniyê (Rûdaw) -** "Di cejnê de baqek gul û şîranî ji wan re diavêjim. Lê nizanim wê çi reaksyona wan hebe. Hêvîdar im dilê wan nerm be. Bi heman awayî jî bersivê bidin." Ev gotina Ebdulrezaq Silêman e, ku bi navê "Ebdo" naskirî ye û şervanekî YPGê ye. Ew li ber deriyê sînorê navbera Tirkiye û Sûriyê, li Serê Kaniyê wezîfedar e.

Ebdo, ku çeka xwe di nav destên xwe de xurt girtiye, dibêje "ti kêşe di navbera me û leşkerên tirk de derneketiye, ne ji wan û ne ji me deng heye. Her aliyek karê xwe dike." Piştî ku bajarokê Serê Kaniyê yê li Rojavayê Kurdistanê bi temamî kete destê Kurdan, şervanên YPGê kontrola deriyê sînorê vî bajarokî ligel Tirkiyeyê dikin. Di navbera wan û leşkerên Tirkiyeyê de tenê çend metre ne. Şervanên vî deriyê sînorî ji Rûdawê re gotin "em gellekî bi asayî tevdigerin, em ti karî nakin ku bibe cihê nearamiya wan."

Bajarokê Serê Kaniyê dikeve bakurê rojavayê parêzgeha Hesekê li Rojavayê Kurdistanê. Hejmara niştecihên vî bajarokî 130 hezar kes e. Serê Kaniya binxetê hevsînor e ligel bajarokê Serê Kaniya serxetê li Bakurê Kurdistanê, ku nave bajêr bi bi tirkî kirine Ceylanpinar. Heta sala 1926ê ev herdu bajarok yek bûn û weke Serê Kaniyê dihat naskirin. Lê di bin raspardeya Frensayê de ev bajarok bû du beş, Serê Kaniya serxetê û ya binxetê. Serxet dikeve nav sînorê Tirkiyeyê, binxet jî yê Sûriyê. Ewa ku van herdu bajarokan jî ji hev cihê dike, tenê xeteke kevn a trênê û têlbendek e.

Tevî ku temenê Ebdo tenê 31 sal e, lê dizane ku bav û bapîrên wî di cejn û helkeftên fermî de, ji bo pîrozkirina li mirov û xwediyên xwe li serxetê, çi êş dîtine: "Li bîra me ye ku her cejnê dayik û bavên me sibehê zû destên me digirtin, da ku ji pişt têlê cejnê li mam, dotmam û kesên me pîroz bikin. Min didît ku dayika min digirî. Bavê min jî wê şevê xew bi çavên wî nedibû."

Ebdo, ku bitementirîn şervanê YPGê ye li vê xala sînorî, bi ser vê de jî bi wê yekê geşbîn e ku ew rewşa berê bê guhertin. Lê di heman demê de dilteng e li ser siberoja mirov û zarokên xwe: "Ji pêvî hevjîn û 2 zarokên min, kesek li vir nemaye. Tevan koç kirine. Ditirsim bûyer bi wî alî de herin ku me tevan têk bibe."

Hejmara şervanên YPGê li vê navçeyê nêzîkî 40 kesî ye. Ji pêvî Ebdo, hemû ew kesên din temenê wan li bin 18 salan de ye. Pirraniya wan jî nexwende ne. Ewê xwendevan jî tenê qonaxa navendî bi dawî kirine.

Ehmed şervanekî erebregez e. Li gor gotina wî, bêtirî ji 6 mehan e ku ew di nav rêzên YPGê de ye. Ehmed behsa sedema hatina xwe bo nav rêzên YPGê ji Rûdawê re kir û got: "Destpêka vê salê bereya Cebhet el-Nusre hate vî sînorî. Gellekî bi xirabî reftarî bi xelkê re kirin. Otomobîlên wan birin û piştre şewitandin." Ji roja ku YPGê dest danîne ser vî deriyê sînorî, Ehmed bi zimanê erebî bangî leşkerên tirk dike: "Çûme ber vî derî, min hewar kir ku em li vir in û ti ziyana me bo wan nabe. Hêvîdar im hûn jî jê têbigihijin. Lê ji pêvî leşkerekî ku serê xwe ji min re leqand, kesî dengê xwe nekir."

# Îsa Hiso bû qurbanê serdana serokê PYDê bo Tirkiyeyê?

**Hewlêr (Rûdaw) –** Heta niha ti alî berpirsyariya terorkirina wî nexistiye stûyê xwe. Lê çavdêrên siyasî di wê baweriyê de ne ku terorkirina serkirdeyê PYDê Îsa Hiso karvedana beramber serdana serokê vê partiyê Salih Muslim bo Tirkiyeyê bû.

Îsa Hiso roja 30ê meha borî li Qamişloyê di encama teqîna bombeyekê di otombîla wî de canê xwe ji dest da. Navborî sala 1945ê li gundekî Qamişloyê ji dayik bibû. Bavê 7 kur û 3 keçan bû. Kurekî wî bi navê Mesûd (Ferhad Baran) sala 1995ê pêwendiyê bi PKKê re datîne. Di sala 2006ê de, di şerekî ligel artêşa Tirkiyeyê de canê xwe ji dest dide. Kurê wî yê din Ibrahîm (Orhan Baran) sala 2009ê diçe nav rêzên gerîllayan.

Hiso piştî xwendina li Qamişloyê diçe zanîngeha Beyrûdê, lê di qonaxa sêyem ya zanîngehê de dest ji xwendinê berdide. Di qonaxa amadeyî de pêwendiyan bi PDKSP re datîne, heta sala 1983yê di rêza vê partiyê de dimîne. Sala 2004ê dibe berpirsê giştî yê pêwendiyên derve yê PYDê. Bi sedema helwestên wî yên derbarê serhildana 12ê Adara 2004ê de, di 11.04.2004ê de tê girtin û piştî 3 mehan azad dibe. Di 14ê Pûşbera 2006ê de careke din li taxa Şêx Meqsûd ya Helebê tê girtin û 3 mehan di zindana asayişa siyasî de dimîne.

Di kongreya damezrandina Encûmena Gelê Rojavayê Kurdistanê de, di sala 2011ê de, wek endamê dîwana serokatiyê tê hilbijartin. Ew beşdarî gellek civînên navdewletî ji bo çareseriya kêşeya kurdî bûye, weke li Stembolê, Frensayê, Norwêçê û Başûrê Kurdistanê.

Tevgera siyasî ya kurdî, heta rikberên PYDê jî, gellekî rêz li Hiso digirtin. Li gor sekretêrê PYKS Ibrahîm Biro, Îsa Hiso ji serkirdeyên din ên PYDê cuda bû: "Hiso bi niştimanperweriyê dihat naskirin. Serkirdeyekî PYDê bû, ku ji xelkên Qamişloyê bû, li navçeyê jî karê siyasî dikir. Di jiyana partîzanî de kesekî pirr asayî û nerm bû."

Her di vî warî de, cîgirê sekretêrê PYDKS Mistefa Meşayix, ku çend salan ligel Hiso di nava rêzên PDKSP de kar kiriye, dibêje: "Wî gellekî bîra kêşeya kurdî li Sûriyê dibir. Hewl dida ku pêwendiyên herdu encûmenên kurdî bi hev re baş bibin. Her kesî karîbû danûstandinê pê re bike. Eşkere bû, li nerastiyê mikur dihat."

Di 25ê meha borî de hevserokê PYDê li ser doza wezareta derve ya Tirkiyeyê serdana wî welatî kir. Piştî vê serdanê bi 5 rojan, dema Hiso ji mala xwe derket derve, bombeyek bi otomobîla wî ve teqiya û serkirdeyê diyar yê PYDê Îsa Heso di cih de can ji dest da. Terorkirina Hiso hevdem bû ligel şerê navbera YPGê û grûpên îslamî, lewma çavdêrên siyasî vê bûyerê bi serdana Muslim bo Stembolê û şerê YPGê ve girêdidin.



Îsa Hiso

### Îsa Hiso jî çûbû Tirkiyeyê

Jêderekî agahdar, ku nexwest navê wî belav bibe, ji Rûdawê re got: "Îsa Hiso ligel kadroyekî din yê PYDê, bi navê Şêrwan Ibrahîm, ku li Holendayê rûdine, bi nihênî serdana Tirkiyeyê kirin, wê serdanê jî zemîna dozkirina Salih Muslim bo Tirkiyeyê xweş kir."

Her vê jêderê derbarê serdana Muslim bo Tirkiyeyê û ew peymana ligel berpirsên Tirkiyeyê encam daye, dibêje: "Ji xeynî pirsa parastina sînoran û vekirina deriyan, herdu aliyan, bi agahdariya rejîma Sûriyê, li ser wê yekê li hev kiribûn ku di siberojê de petrola Rimêlan di rêya Tirkiyeyê re here derve. Dahata wê jî ji hersê aliyan re be."

Her ev jêder terorkirina Hiso bi vê peymanê re girêdide: "Di nav dezgehên istixbaratî yên Sûriyê de baskekî tundrew heye, ku naxwaze ti pêwendî ligel Tirkiyeyê hebe. Dema vî baskî dît ku ev peyman hate girêdan, Heso teror kir û ji PYDê re dibêje raweste."

### Bû qurbanê el-Nusre û Dewleta Islamî?

Sekretêrê Partiya Çep a Demokrat ya Kurd li Sûriyê, Salih Gedo, wiha dibîne ku sûdmendê herî sereke ji kuştina Heso rejîma Sûriyê ye. Di vî warî de ji Rûdawê re got: "Rejîma Sûriyê bi çûna Muslim bo Tirkiyeyê gellekî dilteng bû. Dibe ku pêwendiya terorkirina Hiso bi vê re hebe. Dîsa herdu grûpên çekdar ên el-Nusre û Dewleta Islamî ragihandin ku taktîka şer li beramber YPGê diguherin. Dibe jî ku Hiso bûbe qurbanê vê tektîkguhertinê."

Sekretêrê PYKS Ibrahîm Biro jî nûçeya serdana Hiso bo Tirkiyeyê piştrast kir û got: "Wî ji min re got ku jî bo anîna motorên elektrîkê serdana Tirkiyeyê kiriye. Lê ne got ku ji bo karê dîplomasiyê çûye Tirkiyeyê."

Derbarê wî aliyê ku li pişt terorkirina Îsa Heso ye, Biro tiliya xwe ber bi rejîma Sûriyê ve radikişîne: "Pêwendiyên PYDê ligel rejîma Sûriyê hene. Vê jî nade mandelê. Çûna Salih Muslim bo Tirkiyeyê eger bê rezamendiya rejîma Sûriyê be, ne dûr e ku bîrokeya terorkirina Heso anîbe holê. Dibe ev peyameke rejîmê be, ku dibêje "nikare bê razîbûna me here devera ku dixwaze.""



## Yek ji damezrênerên AKPê, Mîr Dengîr Firat:

# Înkarkirina Kurdan li Tirkiyeyê bêwate bûye

Hêmin Xoşnaw *Hewlêr*

Mîr Dengîr Firat yek e ji damezrênerên AKPê li Tirkiyeyê, du geran endamê parlementoyê bû. Bo demekê jî cîgirê serokê giştî yê AKPê bû. Piştî rexneyên li AKPê û çareser-nekirina pirsa kurd, Mîr Dengîr ji postê cîgirê serokê giştî yê AKPê hat dûrxistin. Derbarê rewşa dawî ya deverê û pirsa kurd de, Rûdaw ev hevpeyvîn pê re saz kir.

**Rûdaw: Hevsengiyên siyasî yên deverê di berjewendiya Kurdan de ne?**

**Mîr Dengîr Firat:** Bêşik ji hevsengiyên Rojhilata Navîn di berjewendiya Kurdan de ne.

**Li gor we, di dema desthilatdariya AKPê de îdeolojiya fermî ya dewletê derbarê Kurdan de hatiye guhertin?**

Ew tundiya ku demeke dirêj li Tirkiyeyê li dijî Kurdan dihat meşandin nemaye. Înkara Kurdan jî kêm bûye û bêwate bûye. Di serdema desthilata AKPê de girêdayî pirsa kurd çi ji aliyê yasayî be, yan aliyê îdarî, çend biryarên baş derketin. Dewletê berê her tiştekî Kurdan înkar dikir. Kesê ku bangewaziya Kurdayetiyê bikira cezayên giran werdigirt. Li gor şîdet û înkara berê, bi rêjeyeke kêm be jî, siyaseta înkarê li ser kultûr, ziman û belavokên kurdî rabûye. Kanalên televizyonê yên ser bi dewletê hatine vekirin ku 24 seetan bi kurdî weşanê dikin. Zanîngehên ziman û edebiyata kurdî hatine vekirin, herwiha dewletê dest bi çapkirin û belavkirina edebiyata kurdî kiriye. Eger hindik be jî, dest bi vekirina dibistanên kurdî hatiye kirin. Ev hemû pêngavên giring in.

**Hûn bûyerên li bakurê Sûriyê çawa dibînin? Bi baweriya we Kurdên Sûriyê wek Kurdên Iraqê dikarin rêveberiya xwe dirust bikin?**

Kiryarên zalim ên Esed û bavê wî li ser Kurdên Sûriyê nayên jibîrkirin. Naskirina maf û nasnameya Kurdên Sûriyê merc e. Sûriyeke nû tê avakirin û di encamê de jî Kurdên Sûriyê otonomî yan federaliyê bi dest tînin.

**Girêdayî rewşa Sûriyê, siyaseta herî baş çi ye ku Tirkiye li hember Kurdên Sûriyê bide meşandin?**

Pêwist e Tirkiye li Kurdên Sûriyê xwedî derkeve û hewl bide wan êrişên çepel ên kesên ku ji derveyî Sûriyê hatine û bi navê milîtanên Cebhet e-Nusre li dijî Kurdan dikin, rawestîne.

**Eger li bakurê Sûriyê rêveberiyeke kurdî avabibe, Tirkiye bi neçarî dibe cîrana du Kurdistanan. Ew herdu Kurdistan wê bandorê li ser proseya çareseriya pirsa kurd li Tirkiyeyê bikin?**

Ew pêkhate bandorê li ser Tirkiyeyê nakin. Eger em rewşa Kurdên Sûriyê û Tirkiyeyê bidin ber hev û rejîmên herdu welatan jî bidin ber hev, encama wê di berjewendiya Kurdên Tirkiyê de ye.

**Hûn çawa li siberoja proseya çareseriya pirsa kurd dinêrin?**

Beriya her tiştî divê çek bên bêdengkirin û bê teqezkirin ku êdî çek neyên bikaranîn. Tirkiye jî divê di destûr û yasayan de astengiyên li pêşberî azadiyê rake.

**Di civîna Erdogan ya ligel xizmên qurbaniyên Roboskê de, wî got "min fermana operasyonê nedaye". Baş e, eger wiha ye çima berpirsên wê bûyerê dadgeh nake?**

Bêşik divê di vî alî de dadgeh bê serpişkkirin. Hinek caran aloziyên siyasî mirov neçar dike ku li derveyî kevneşopiyan tevbigere.

**Li gor we, di nav hikûmetê de, yan nêzîkî hikûmetê, hinek kes an grûp hene ku hewl didin wê proseyê beravêtî bikin?**

Di nav herdu aliyan de kesên wiha hene û divê em bi neçarî li vê rastiyê mikur bên

---

Fûad Heqîqî *Hewlêr*

## Xortên Rojhilatê Kurdistanê

# Ji bo xweteqandinê rêdikin Afganistan û Iraqê

Kurdê bi navê Omîd Mistefayî yê ji bajarê Ciwanro yê Rojhilatê Kurdistanê li Afganistanê xwe teqand. Ew di rêya komeke tundrew a nediyar ji bo Afganistanê hatibû rêkirin. Beriya çend mehan jî xortekî din yê bi navê Hîwa Mihemed, ku ew jî ji Ciwanro bû, li navçeya Wezîristan a Pakistanê di encama bombebarana firokeyên bêmirov yên Amerîkayê de hatibû kuştin.

Roj bi roj çûyîna xortên kurd bo Afganîstanê zêdetir dibe. Bandora rêxistinên îslamî yên tundrew ên mîna Ensar el-Îslam jî xwedî roleke diyar in di vî warî de. Baregehên Ensar el-Îslam di sala 2003yê de li Başûrê Kurdistanê hatibûn rûxandin û gellek ji wan reviyabûn Rojhilatê Kurdistanê. Dema ew reviyan wî aliyê sînor, ew ji hêla Komara Îslamî ve hatin pêşwazîkirin. Wan di nava demê de xwe birêkxistin. Rêxistinên bi vî rengî bandor li gellek xortên kurd kirin ku di bin sîwana wan de berê xwe bidin welatên mîna Pakistan û Afganîstanê.

Ajansa nûçeyan ya Kurdpa, ku nûçeyên taybet derbarê Rojhilatê Kurdistanê de diweşîne, dide zanîn ku bi sedan xortên ji navçeyên Ciwanro û Seqiz bûne endamên rêxistinên cîhadî. Herwiha bi awayekî fermî çekên wan hilgirtine. Niha li Rojhilatê Kurdistanê nivîsgeha Quranê, nivîsgeha Qurana Kurdistanê û herwiha Cemaeta Dewet û Islah tevgerên îslamî yên çalak in. Lê ew pêkanîna her awayê karên tundrewiyê red dikin. Nivîsgeha Quranê sala 1976ê li bajarê Sine hate damezirandin. Lê sala1978ê nivîsgeha Qurana Kurdistanê jê cuda bû.



Cemaeta Dewet û Islah nêzîkî rêxistina Birayên Misilman ango Îxwan Muslimîn e. Wekî şaxê Îxwan ê li Rojhilatê Kurdistanê li wan tê nêrîn. Lê ew bi xwe vê yekê red dikin. Berpirsê Cemaeta Dewet û Islah, Luqman Stûde, ji Rûdawê re di vê bareyê de wiha axivî: "Em ji aliyê bîr û baweriyan ve di rêza Îxwanan de ne. Lê pêwendiyeke me ya rêxistinî ligel wan nîne."

Ev hersê tevger ne hilgirê bîr û baweriyên selefî ne. Ew xwe wekî Îslamiyên nerm didin nasîn. Lewma hikûmeta Îranê jî ti helwestê li dijî wan nagire. Lê heta niha hinek caran hejmarek ji endamên wan hatine girtin û li zanîngehan jî rêya xwendinê li ber wan hatiye girtin.

Di havîna sala 2009ê de hejmarek karên terorîstî li Sine pêkhatin. Hikûmeta Îranê jî komên îslamî bi pêkanîna wan bûyeran tawanbar kiribû. Di van bûyeran de melayê Cumeya Sine û nûnerê bajarê Sine yê Encûmena Bijarteyên Îranê hatibûn kuştin. Piştî salekê 2 kes bi tometa pêkanîna kuştina wan li bajarê Sine hatin darvekirin. Li gor raporta ajansa Îranê, ew mikur hatibûn ku encûmeneke Selefiyan, ku ji 27 kesan pêk dihat, biryara kuştina wan herdu kesan dabû.

### Ji Seqiz 10 kesan xwe teqandine

Ji hêla din ve Navenda Nûçeyên Seqiz jî beriya demekê nivîsandibû ku par rêxistina al-Qaîde bi sedan lawên ji navçeya Seqiz bi navê "cîhada li dijî gawir û xaçperestan" rêkirine welatên mîna Afganistan, Çeçenistan û Iraqê. Heta wê demê 7 kes hatibûn kuştin û kesek ji wan jî ji aliyê Amerîkiyan ve, piştî ku hatibû girtin, bo Guatanamoyê hatibû şandin. Li gor zanyariyên wê malperê, wê demê 141 xortên ji Seqiz endamên al-Qaîde bûn. Ajansa Kurdpa jî hejmara xortên ji Seqiz yên ku xwe teqandine bi zêdetirî 10 kesan dide nîşandan. Tenê par li Afganistanê 5 kesên ji Ciwanro li Afganistanê hatin kuştin.

Hinek kes van rêxistinan bi piştgirîstandina ji dewleta Îranê tometbar dikin. Bi vê yekê cihê partiyên kurdî tê girtin û xortan didin aliyekî. Li gor gotina Mesûd Keremî yê ji bajarê Ciwanro, ev rêxistin bêhtir di nava çînên civakê yên xizan de şaxên xwe vedidin. Herwiha nexwendina di qadên piştguhkirî yên civakê de weke sedemeke din tê nîşandan.



# 160 cîhadî ji Holendayê çûne Sûriyê

## ...hinek ji wan Kurd in

**Wladimir van Wilgenburg** *Amsterdam*

Piştî gurbûna şer di navbera Kurdan û grûpên îslamî de li deverên kurdî yên Şêx Meqsûd a girêdayî Helebê û du bajarokên din ên li rojhilatê heman bajarî, heftiya borî kesekî holendî yê esl mexrebî hate kuştin. Vê yekê xeleka dilgiraniyan firehtir kir, ji ber ku cîhadî li Holenda bi asteke zêde beşdarî şerê navxwe yê Sûriyê dibin.

Kesê holendî navê wî Elyas Ebû Welayî bû ku wek Şukrî Meselî naskirî bû. Malpera "DeWareReligie.nl" ya ku alîgiriya cîhadiyan dike, eşkere kir ku ew birayê Murad Meselî ye û yekem "şehîdê holendî" ye ku di meha Adarê de li Sûriyê hate kuştin.

Dixuye Meselî endamekî Cebhet el-Nusre be, ku liqeke al-Qaîde ye, û tê gotin ku ji aliyê Tirkiyeyê ve piştevanî lê tê kirin. Cebhet el-Nusre li dijî YPGê şer dike ku wek baskekî leşkerî yê PKKê li Sûriyê tê hejmartin. YPG beşdarî çend şeran li dijî Tirkiyeyê bûye. Li gor malpera navborî, ***"Meselî di şerekî de bi du guleyên YPGê hat kuştin."***

Tê gotin bi sedan cîhadî ji Holendayê çûne Sûriyê, da ku li wir şer bikin, heta niha jî 4 holendî li Sûriyê hatine kuştin. Heman malperê di 17ê Tîrmeha îsal de belav kir ku ev cîhadiyên holendî ligel "çekdarên îslamî" ên din beşdarî dorpêçkirina gundekî Kurdan li Helebê bûne.

Saziyên kurdî yên nêzîkî PKKê li Holendayê dilgiraniya xwe di vî alî de nîşan dane, nemaze piştî ku çend Kurd jî ji aliyê mizgeftên çend bajarên holendî wek Lahay, Rotterdam û Leidin ji bo Sûriyê hatine şandin. Dilgiraniya wan ji tirsa wê yekê ye ku ev kesên ku diçin Sûriyê, li dijî Kurdan şer bikin. Di demekê de ku hinek ji wan cîhadiyên ku bo Sûriyê hatine rêkirin, bi esil Kurd in û ji Tirkiyeyê ne, tew hinek ji wan ji wan malbatan in ku alîgiriya PKKê dikin.

Serokê Saziya Civata Neteweyî ya Kurd li Holendayê, Aydin Batman, got ku 160 kes bo Sûriyê hatine şandin û dilgiran e ku ev kes li dijî Kurdan şer bikin: "Ciwan hatine rêkirin, da ku li dijî Kurdên Rojava şer bikin." Rojnameya Yeni Ozgur Politika, ya ku alîgira Kurdan dike û bingeha wê li Ewropayê ye, nivîsiye: "Ev ji aliyê saziyên navneteweyî ve tê kirin. Dijwar e welatên ewropî agahdarî van hemû kesan nebin ku ji Ewropayê bo Sûriyê hatine şandin."

Cotmeha borî li Rotterdamê sê cîhadî hatin girtin ku dixwestin ber bi Sûriyê herin. Du ji wan Kurd bûn. Jineke 16 salî û mêrê xwe. Herdu jî li Holendayê diman û beriya ku herin Sûriyê li firokexaneyeke belçîkî hatibûn girtin.

Di meha Sibatê de jî, serokê dezgeha xizmetguzariya nûçegeriya holendî AIVD, Rob Persol, dilgiraniya xwe nîşan da derbarê wan hevwelatiyên holendî yên ku li Sûriyê şer dikin. Rob di bernameyeke televizyonî de got: "Cihê dilgiraniyeke zêde ye, ji ber wan ezmûnên şerxwaz ên ku werdigirin û wê îdeolojiya ku li Sûriyê fêr dibin. Hemû tiştên ku li wir fêr dibin, bi xwe re tînin Holendayê."

## Tevî ku zaroka wî hemwelatiya Almanyayê ye

# Kurdek ji ber piştgiriya PKKê tê dersînorkirin

**Köln (Rûdaw) -** Dadgeha Îdarî ya Fedaral a Almanyayê (Bundesverwaltungsgericht) biryar da ku piştgirekî kurd yê Partiya Karkerên Kurdistanê (PKK) were dersînorkirin, tevî ku zarokekî wî kesî hemwelatiyê Almanyayê ye.

Dadgehê di biryara xwe de diyar kiriye ku ewlekariya raya giştî di ser parastina mafê taybet yê wî kesî re ye û ev yek jî bi piştgiriya wî kesî ji "rêxistineke terorîst" ve girê da. Kurdê 44 salî bi piştgiriya çalakiyên PKKê û rêxistinên din ên girêdayî wê tê tewanbarkirin. Herwiha di biryara dadgehê de (Urt. v. 30.07.2013, Az. 1 C 9.12) tê gotin ku ew beşdarî gellek xwepêşandan û çalakiyên din bûye û di birêveberiya hinek komeleyên Kurdan de cih digire.

### Biryar dikare rê veke

Li Almanyayê dema dêbav ne xwediyê hemwelatiya Almanyayê bin, lê xwedî zarokek bin ku hemwelatiya Almanyayê be, ew dêbav nayên dersînorkirin û mafê rûniştinê werdigirin. Lê Dadgeha Îdarî ya Fedaral a Almanyayê vê carê bi sedema ku ewlekariya raya giştî di ser parastina mafê taybet re ye, diyar kiriye ku biryara wan guncaw û ne nakok e ligel biryarên Dadgeha Bilind ya Yekîtiya Ewropayê ji bo parastina ciwanan, ku



wan ji dersînorkirina ji nav xaka Yekîtiya Ewropayê diparêze û diyar kiriye ku hevjîna Kurdê ku niha biryara dersînorkirinê wî hatiye dayin, xwediya rûniştina demdirêj e li Almanyayê û ew dikare zarokê xwedî bike. Bi vî awayî ev biryar dikare ji gellek kesên din re jî bibe emsal.

### Daxwaza hemweatîbûnê nedihat pejirandin

PKK ji sala 1993yê ve li Almanyayê qedexe ye. Heta niha daxwaza hemwelatîbûna Almanyayê ya gellek Kurdan ji ber piştgiriya wan ya ji bo PKKê nehatiye pejirandin. Herwiha bi heman sedemê gellek caran dadgehên Almanyayê biryarên dersînorkirina alîgirên PKKê bi hênceta metirsiya ewlekariya raya giştî deranîne. Lê ev yekem car e ku biryara dersînorkirinê derbarê kesekî de tê dayîn ku zarokekî wî hemwelatiyê Almanyayê be.



Saziyên Kurdan û Aşûriyan li Almanyayê

# Li dijî arîkariya ji bo muxalefeta Sûriyê ne

**Köln (Rûdaw) -** Saziyên Kurdan û Aşûriyan yên li Almanyayê û Civaka ji bo Gelên di bin Gefê de (GfbV) bang li Neteweyên Yekbûyî (NY), Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA), welatên Yekîtiya Ewropayê (YE) û Vatîkanê kirin ku ewlekariya Rojavayê Kurdistanê misoger bikin. Bangdêr herwiha wê bi armanca ku çek û alîkariya maddî negihije muxalefeta Sûriyê, lijneyeke hevdîtinên dîplomatîk ava bikin.

Di bangnameyê de tê destnîşankirin ku di dema şerê navxweyî yê di navbera hikûmeta Esed û muxalifan de, herêmên Kurdan ên li Rojavayê Kurdistanê di nava aramiyê de bûn. Herwiha bi sedhezaran Kurd û bi giştî 100 hezar Aşûrî, Keldanî, Aramî û Ermenî ji bo jiyana xwe misoger bikin koçî herêmên Kurdan kirine.

### "Dixwazin Kurdan bikişînin nava şer"

Di bangê de tê diyarkirin ku muxalefeta Sûriyê ketiye bin kontrola hêzên îslamî yên radîkal û ji destpêkê ve ew dixwazin ku Kurdan û kêmneteweyên din jî bikişînin nava şer: "Piştî Kurdan û Xiristiyaniyan ev daxwaz pêk neanîn, herêmên Kurdan bûn armanca êrişên muxalifên navderbasbûyî. Roj bi roj serdegirtinên li ser gundên Kurd û Suryaniyan, revandina jin û zarokan û êrişên çeteyan yên li ser gundan zêdetir dibin."

Saziyên ku bangname îmze kirine, diyar dikin ku ew ditirsin dema hêzên îslamî yên tundrew bi ser bikeven, ewê herêmê li Kurd, Aşurî, Elewî, Xiristiyan, Durzî û Êzdiyan bikin gola xwîne. Derbarê serkeftineke muhtemel ya Beşar Esed de jî, ev pêşdîtin tê kirin: "Serkeftineke hêzên Esed jî wê di encamê de bibe tolhildana ji xelkên sivîl yên li herêmê." Ji ber van egerên ku hatine rêzkirin, bang li NY, YE, DYA û Vatîkanê tê kirin ku ewlekariya sivîlan pêk bînin, arîkariya koçberan bikin û xwebirêvebirina herêmên Kurdan misoger bikin.

### Şanda hevdîtinên dîplomatîk tê avakirin

Berpirsê karûbarên Rojhilata Navîn yê rêxistina mafên mirovan GfbV, Dr. Kemal Sîdo, ji Rûdawê re diyar kir ku bangname destpêka karên wan e û wiha pê de çû: "Emê şandekê ava bikin û bi heman mebestê bi hemû fraksyonên parlementoya Almanyayê re rûnin. Hewldana me ya tevlîkirina rewşenbîrên alman ya kampanyayê jî wê çêbibe. Herwiha weke şand emê bi herdu dêrên mezin yên Almanyayê re jî hevdîtinan pêk bînin."

Sîdo destnîşan kir ku ew naxwazin ti welat piştgiriya çek û maddî bidin muxalefetê: "Metirsî li ser kêmnetew û olên din heye. Kampanyaya me ya îmzeyan heye û em naxwazin ku çek û arîkariya maddî ji muxalefetê re herê. Heta ku ew bi nivîskî xwebirêvebirina Kurdan, kêmnetew û olên din di Sûriya siberojê erê nekin, divê arîkari ji wan re neçe. Xebata me jî wê di vê bareyê de be"

# Parlementerên alman parlementerên kurd diparêzin



Wênê: Darius Dunker

Andréj Hunko

Li parlementoya Almanyayê însyatîfek bi navê „Parlementer parlamentran diparêzin" heye. Parlementerên piştgirê vê însyatîfê piştgiriya parlementerên welatê din dikin, yên ku ji ber xebata xwe ya siyasî di bin zextê de ne. Di vê çarçoveyê de gellek parlementerên alman piştgiriya parlementerên welatên din dikin. Di nava parlementerên ku piştgiriya wan tê kirin de, ji parlementerê CHPê yê Dêrsimê Huseyîn Aygun bigire, heta parlementerê ji doza Ergenekonê girtî yê CHPê Mustafa Balbay jî heye. Cîgirê serokê parlementoya Almanyayê Wolfgang Thierse di çarçoveya karê însyatîfê de hevkarî û piştgiriya parlementera kurd ya Amedê Leyla Zana dike. Em bi yek ji endamên vê însyatîfê û parlementerê alman Andréj Hunko yê ji Partiya Çep (Die Linke) re derbarê vê projeyê de axivîn.

**Rûdaw: Em destpêkê bi naskirina we destpêbikin, herwiha hinek agahiyan li ser kare we û bi taybetî jî aliyê piştevaniya we ya navnetewî û ji bo Kurdistanê.**

**Andréj Hunko:** Ez ji sala 2009ê ve endamê Parlementoya Federal ya Almanyayê me û pê re jî yê Civata Giştî ya Parlementerên Konseya Ewropayê me. Beriya ez wekî parlementer werim hilbijartin jî min gellekî girîngî dida piştgiriya navnetewî. Wekî parlemeterekî ku bi pirsgirêkên ewropî re mijûl, ez herdem hewl didim ku têkiliyê bi tevgerên wan welatan re deynim. Serdana girtîgehan jî di nav vî karê min de ye. Di Pûşbera 2011ê de min li Tirkiyeyê çavdêriya birêveçûyîna hilbijartinan kir. Hê jî 9 parlementerên wê demê hatibûn hilbijartin di girtîgehê de ne. Min di Nîsana par de li girtîgeha Amedê serdana parlementer Selma Irmak û li ya Mêrdînê serdana Faysal Sariyildiz kir. Piştî ez vegeriyam Almanyayê, min pêşniyar kir ku ew jî bikevin ber bernameya "Parlementer parlementeran diparêzin" ya parlementoya Almanyayê de.

**Ev bernameya ji bo hevkariya bi parlementaran çi ye, ji kengî ve heye û hûn piştgirê kîjan parlementerî ne?**

Parlementoya Almanyayê di Kanûna 2003yê de biryar da ku tevlî projeya "Parlementer parlementeran diparêzin" bibe. Bi vê yekê Parlementerên alman dikarin bibin piştgirên parlementerên welatên din yên di bin zextê de, yan jî di girtîgehê de ne. Ez bûm piştgirê parlementerên girtî yên min serdana wan di girtîgehê de kirin.

**Armanca vê projeya piştgiriyê çi ye?**

Li gellek welatan parêzvanên mafên mirovan û siyasetvan di bin tehdîtê de ne. Fikra bingehîn ya bernameya "Parlementer parlementeran diparêzin" ew e ku parlementerên peywira xwe di nava ewlekariyê de pêk tînin, alîkariya hevpîşeyên xwe yên biyanî yên ku nikarin bi awayekî azad tevbigerin bikin.

**Ev proje heta niha çiqasî bi ser ketiye?**

Di vê babetê de pîvandina serkeftinê zehmet e. Armanca min ew e ku di çarçoveya vê bernameyê de bi awayekî jiyana wan parlementeran bikeve jêr misogeriyê. Ku memûr bizanibin ku têkiliya mirovan wekî mînak bi parlementerekî alman re heye û dikarin raya giştî agahdar bikin, ew wisa hesanî bi ser wan de naçin.

**Kî bûye piştgirê kê?**

**Wolfgang Thierse:** Leyla Zana
**Andréj Hunko:** Selam Irmak, Faysal Sariyildiz
**Annette Groth:** Kemal Aktaş û Îbrahîm Ayhan
**Heike Haennsel:** Gulseren Yildirim
**Ulla Jelpke:** Hatîp Dîcle

**We bi xwe heta niha ji bo wan parlementerên ku hûn piştgiriya wan dikin çi kiriye?**

Min babeta parlementerên li Tirkiyeyê girtî û bi taybetî jî yên ez piştgiriya wan dikim gellek caran aniye zimên, bo mînak di rûniştinên Konseya Ewropayê de li Strasbûrgê anjî di Lîjneya Ewropayê ya Parlementoya Almanyayê de, dema ku derbarê endambûna Tirkiyeyê di YE de tê axaftin. Tiştê herî giring yê ku ez dikarim ji bo wan bikim, standina piştgiriya raya giştî ji bo wan e.

**Armancên we yên dahatûyê çi ne?**

Di demeke nêzîk de li Almanyayê dîsa hilbijartin hene. Divê ez tiştê ji destê min werê bikim, ji bo di hilbijartinan de fraksyona min bi awayekî bihêz dîsa bikeve parlementoyê. Herwiha ez bi heman şêweyî dîsa werim hilbijartin. Ji ber vê sedemê ez niha serdanên derveyî Almanyayê nakim. Ez hêvîdar im ku piştî Cotmehê jî dîsa bikaribim karê xwe berdewam bikim. Belkî ez dîsa di meha Adarê de wekî çavdêr ji bo hilbijartinên herêmî biçim Tirkiyeyê, ango Bakurê Kurdistanê.

**Gelo rayedarên tirk ji ber vê piştgiriyê bertek nîşan dan? Herwiha astengiyek ji parlementerên ku hûn piştgiriya wan dikin re deranîn?**

Na, bertekên fermî nebûn. Ez bi astengkirina wan jî nehisiyame.

**Di navbera Tirkiyeyê û aliyê kurd de hevdîtinên aştiyê hene. Neberdana siyasetmedarên di girtîgehan de astengiyeke ji bo pêkanîna aştiyê û divê çi biqewime?**

Bi baweriya min, ji bo ku pêvajo bi pêş bikeve, divê girtî di cih de werin berdan. Ez gellekî seyr dibînim ku di qanûnê de binê têgîna terorîstiyê çiqasî berfireh kirine û bi wê hêncetê xelk avêtine girtîgehan. Konseya Ewropayê di meha Nîsanê de li ser pêşniyara min di rapora xwe de PKK wekî rêxistineke terorîst bi cih nekir. Ev îşaretek ji bo piştgiriya pêvajoya aştiyê bû. Eger niha kesên ku ji ber doza KCKê bi hêncetên beredayî hatine girtin, serbest werin berdan û dozên li dijî wan werin betalkirin, wê bibe bersivek.

*Hevpeyvîn:*
***Agît Boztemur***

# Eren Derdiyok hatiye beralîkirin

**Köln (Rûdaw) -** Bi hêviyên mezin Eren Derdiyok ji Bayer Leverkusen transferî tîma gundî TSG 1899 Hoffenheim bibû. Lê niha Hoffenheim Eren beralî kiriye û heta nikare ligel tîma yekemîn jî antremanan bike. Hoffenheim tîmeke antremanan ji wan lîstikvanan re çekiriye ku êdî di planên klûbê de ti rolê naleyizin. Eren Derdiyok jî yek ji wan kesan e.

Eren havîna sala borî bi 5,5 milyonan ji Bayer Leverkusen transferî Hoffenheim bibû. Di dema xwe ya li Leverkusen de Eren di 3 salan û di 112 maçan de 34 gol avêtibûn û 16 jî amade kiribûn. Lê di 19 maçên ji bo Hoffenheim de, Eren karîbû tenê golekê biavêje û tenê yek golê amade bike. Peymana Eren li Hoffenheimê heta 2016ê didome û heta niha ne diyar e ka Eren wê transferî tîmeke din bibe an na. Du ji wan tîmên ku behsa wan tê kirin ku dixwazin Eren transfer bikin, FC Turin ya îtalî û HSV ya almanî bûn, lê herdu transfer jî nebûn. Eren jî bi germî li Îtalyayê û FC Tûrîn nanêre: "HSV vê gavê xwedan zêde lîstikvan e, Hamburg divê xwe ji çendekan qut bike, Tûrîn ji bo min ne cihê nîqaşê ye, Îtalya bala min nakişîne, Tûrîn jî hertim di rêzên jêrîn de têdikoşe."

Eren Derdiyok ji malbatek Kurdên Bakurê Kurdistanê ye û li Basela Swîsreyê ji dayik bûye. Eren di tîma netewî ya Swîsreyê de dilîze û bi 3 golên xwe yên di maça Swîsre-Almanya (maç bi 5-3 ji bi Swîsreyê bi dawî bibû) de bala gellek taximan kişandibû ser xwe.



# Hedefên Celal mezin in

**Köln (Rûdaw) - Celalê ji malbateke bi esil Nisêbînî di sala 1995ê de li Swêdê li bajarê Borlängö hatiye dinyayê. Celal di 9 saliya xwe de, ango di 2004ê de, di nav DALKURDê de dest bi futbolê dike û ev du sezon in ku di tîma ku di lîga 3. de ji bo şampiyontiyê têdikoşe de dileyize.**

**Beriya du mehan tîma almanî Hansa Rostock jî ji bo ku bi taximên wan yên U19 û U23 re antremanan bike ew vexwendibû Almanyayê. Herwiha heta niha Celal 2 caran çûye kampa Swêdê ya lîstikvanên ku di sala 1995ê de ji dayik bûne.**

**Celalê 19 salî taybetiyên xwe wiha destnîşan dike: "Ez normal li milê rastê û çepê yê nivê seheyê de dileyizim. Bes DALKURD ez gellek caran weke forvet jî dame lîstandin. Jêhatîbûna min li seheyê xurtbûn, lezbûn, teknîk, şût û fahmkirin-xwendina lîstikê ne. Ji ber ku ez xurt im, şûtên min baş in û teknîka min jî zêde baş e, antrenor min gellek caran weke forvet dide leystandin."**




**Hedefa Celal ew e ku di pêşerojê de di taximekî mezin yê derveyî Swêdê de bileyîze: "Bes ez dizanim ku hêj rêyeke dirêj li pêşiya min e. Ji ber vê yekê ez pêşî dixwazim li Swêd rojekê bi xêr werim lîga yekê û ji wir rêya xwe dom bikim."**

**Pirraniya futbolvanên ciwan leystikvanên weke Ronaldo û Messî ji xwe re dikin mînak, lê Celal heyranê futbolîstê Malmö FF yê kurd Jiloan Hamad e: "Lîstikvanê ku qîmetî wî li cem min gellek e, lîstikvanê Malmö FF yê kurd Jiloan Hamad e. Jiloan Hamad jî weke min li milê rastê yê nîvê sehayê dileyîze û wî jî weke min kariyera xwe di liga 3. ya Swedê de di temenê 17 salî de destpêkir. Piştî salekê derbasî taximekî jî Swêdê yê herî mezin Malmö FF bû. Heta sala çûyî kaptanê taximê millî yê Swêdê yê U21 bû. Vê salê jî di 22 saliya de bû kaptanê Malmö FF. Di lîga Swêdê de ti kes wiha ciwan nebûye kaptan. 10 taximên derveyî Swêdê Hamad dixwazin, bes ti eceleya wî nîne."**

# Ciwan Haco: Êdî ji bo Rojavayê Kurdistanê stran bes in

**Hewlêr (Rûdaw) –** Hunermend Ciwan Haco ragihand ku her çiqasî ti berhemeke wî ya nû derbarê Rojavayê Kurdistanê de tine, lê bi berdewamî dil û hestên wî li Rojava ne.

Di destpêka azadbûna navçeyên Rojavayê Kurdistanê de, Ciwan Haco stranek li ser Qamişloyê got, di dema derketina bûyerên li Serê Kaniyê de jî, dîsa stranek li ser wî bajarokî jî got. Lê niha ti berhemeke wî ya nû ji bo Rojavayê Kurdistanê tine û dibêje: “Me stranên xwe gotin, êdî berhem bes in. Dil û hestên min bi berdewamî li Rojavayê Kurdistanê ne, bi berdewamî haya min ji nûçeyên Rojavayê Kurdistanê heye, ji Efrînê bigire heta Dêrikê. Niha dem dema yekîtiya Kurdan e. Ew hêza niha li Rojavayê Kurdistanê heye, divê bê bihêztir kirin.”

Derbarê bûyerên li Tirbespiyê jî, Ciwan Haco got: “Ji wan kesan re dibêjim ku êrişî bajarên Rojavayê Kurdistanê dikin; fermo Şamê rizgar bikin, hûn li Kurdistanê çi dikin, xêr e hûn Kurdan dikujin?”

Ciwan Haco ku bi serdanekê vegeriyaye Herêma Kurdistanê û serdana navenda kanala Rûdawê jî kir, pirr geşbîn e bi siberoja Rojavayê Kurdistanê û dibêje: “Ez ji sedî sed piştrast im ku wê Rojavayê Kurdistanê azad bibe.” Haco nêrîna xwe li ser kanala Rûdaw jî anî zimên û got: “Rûdaw wek şoreşekê di medyaya kurdî de dibînim, karekî pirr profesyonel û baş dikin. Wek lê dinêrim, Rûdaw bi tevahî Kurdistanî ye. Herwiha dibînim ku Rûdaw hewl dide yekîtiya Kurdan dirust bike.”


Wêne: Rûdaw

Stranbêjê kurd Ciwan Haco di sala 1957ê li bajarê Qamişloyê ji dayik bûye. Xwendina lîseyê wî li Qamişloyê xelas kir û piştre hat Almanyayê û li zanîngeha Bochumê muzîk xwend. Haco heta niha gellek berhem afirandine, wek Sî û Sê Gule, Bilûra Min, Gula Sor, Dastana Egîdekî, Leyla, Pêşmerge, Serhildan, Diyarbekir û Girtiyê Azadiyê. Ciwan Haco muzîka kurdî ya resen bi şêwaza folk-rok dixwîne û di qalibekî nû de amade dike. Haco bi şêwaza xwe heta radeyeke berçav muzîka kurdî bi cihanê daye nasîn.

## Nazdar diçe ser kaniyê



Piştî demeke bêdengiyê, hunermend Nazdar vê carê ne bi deng, lê bi reng derket û çend wêneyên xwe yên nû belav kirin.

Nazdar, ku ji Bakurê Kurdistanê ye û li Almanya dijî, di rûpela xwe ya li ser Facebookê de çend wêneyên xwe yên nû belav kirin. Di wêneyan de Nazdar bi cilên kurdî derdikeve ku cêriyek li ser milê wê ye û ji kaniyê avê tîne.

## Du stranên kurdî di CDya Tatlises de hene

Çavkaniyeke nêzîkî hunermend Îbrahîm Tatlises ji Rûdawê re got ku Tatlises di demeke nêzîk de CDyekê belav dike ku du stranên kurdî jî tê de hene.

Vê çavkaniyê got ku ew CD di dawiya meha Îlona îsal de belav dibe û du stranên kurdî yên kurmancî tê de hene. Li gor gotina wê çavkaniyê, Tatlises di demeke nêzîk de serdana Herêma Kurdistanê jî dike û yek ji stranên kurdî yên CDya xwe li bajarê Hewlêrê dike klîp û mezintirîn konsert jî li Hewlêrê saz dike.



## Wezîrê derve yê berê yê Tirkiyeyê, Yaşar Yakiş:

# Roj hatiye ku pirsa kurd li Tirkiyeyê bê çareserkirin



Profesor Yaşar Yakiş, yekem wezîrê derve yê Tirkiyeyê piştî hatina AKPê ya ser desthilatê, dibêje ku ew kêfxweş e ku beriya 13 salan û beriya ku partiya wî bigihije desthilatê, wî gotiye: "Divê em pêwendiya xwe ligel Kurdên Iraqê baş bikin." Û îro jî encamên wê siyasetê dibîne. Yaşar Yakiş di vê hevpeyvîna ligel Rûdawê de behsa tevgera Kurdan li Rojavayê Kurdistanê ji bo damezrandina îdareyeke serbixwe dike, herwiha behsa siberoja Kurdan li deverê û pêwendiyên Kurd û Tirkan dike.

**Rûdaw: Kurd li Sûriyê mijûlî damezrandina rêveberiyeke taybet in. Li gor we, ev pêngav gefeke li ser dewletên cîran e?**

**Yaşar Yakiş:** Bi derbasbûna demê re derdikeve, ka ewa dikin ku damezrînin dibe gef li ser welatên cîran an na, ev girêdayî çawaniya birêvebirina proseyê ye. Çi Kurdên Sûriyê bin, çi welatên cîran, dikarin vê bixin xizmeta proseya aştiyê. Eger di vê de bi ser bikevin, Kurdên Sûriyê û welatên cîran jî ji vê yekê sûdmend dibin.

**Eger wiha ye, çima ew gotûbêja ku li Stembolê di navbera hevserokê PYDê Salih Muslim û karbidestên wezareta derve ya Tirkiyeyê de tê kirin, bi awayekî eşkere nayê kirin?**

Pêwist e gotûbêjên Tirkiyeyê ligel birêz Salih Muslim li gor pîvanên diplomatîk birêve herin. Ev mijarên hestyar pêwist e her ji pêşî ve bi agahdariya medyayê birêve herin, ji ber ku zehmetiyê li ber tevgera azad ya aliyan çêdike û wiha jî qonaxê ber bi têkçûnê dibe. Her çawa be, di dema guncaw de hemû mesele ji bo raya giştî tên eşkerekirin.

**Lê bi damezrandina wê rêveberiyê li Rojavayê Kurdistanê, Tirkiye li şûna Kurdistanekê dibe cîrana du Kurdistanan, hûn vê yekê çawa dibînin?**

Niha li bakurê Iraqê herêmeke otonom heye. Lê li gor yasaya navneteweyî ew herêm axa dewleta Iraqê ye. Derbarê Sûriyê de jî, heta niha herêmek nîne ku statûya herêmeke otonom bi dest anîbe. Ji ber aloziyên navxweyî yên Sûriyê, li bakurê Sûriyê Kurd hewl didin rêveberiyeke xwe dirust bikin. Heta niha ew herêm nehatiye damezrandin û ji aliyê hikûmeta Sûriyê ve û li ser asta navneteweyî nehatiye naskirin. Salih Muslim di daxuyaniyên xwe de vê hestyariyê li ber çavan digire.

Em dizanin ku Tirkiyeyê ligel herêma kurdî li Iraqê pêwendiyên dostane danîne. Bi vê helkeftê jî dixwazim behsa bîranînekê ji we re bikim ku hêja ye di rûpelên dîrokê de bê nivîsandin:

*Di sala 2000î de, ku nû AKP di qonaxa damezrandinê de bû, wê demê berpirsên hikûmeta hevpeyman li Tirkiyeyê digotin: "Kurd dixwazin li bakurê Iraqê herêmeke otonom damezrînin. Bila bikin emê hingê bibînin", bi vî awayî dipeyvîn. Min rojnameyek ku daxuyaniyeke bi vî rengî tê de hatibû belavkirin ligel xwe bir û çûm odeya birêz Abdulla Gul ku niha serokkomarê Tirkiyeyê ye û min jê re got: "Li Iraqê çi dibe xelkê Iraqê biryar didin. Şiyana Tirkiyeyê ji bo çêkirina kartêkirinê li ser pêşhateyên bakurê Iraqê sînordar e. Eger xelkê Iraqê biryara damezrandina herêmeke otonom li bakurê Iraqê bidin, an eger di qonaxên bê de dewleteke serbixwe ya kurdî ava bibe, êdî wê heta hetayê cîrantiya Tirkiyeyê ligel Kurdan bibe yasayî. Lewma pêwist e pêwendiya me ligel wan baş be. Em hêj nebûne desthilat. Lê piştî hilbijartinan em bibin desthilatdar, pêwist e her ji niha ve em helwesta xwe ji bo raya giştî eşkere bikin. Em wek AKP nikarin xwe ji wê rastiyê vedizin." Birêz Gul got ku ew helwesta min rast dibîne. Lê di wê demê de bûyer bilez diguherîn, lewra me got Tirkiye di fetlînokeke pirr zehmet de dizîvire.*

Piştî ku hilbijartin hatin kirin, AKP gihîşt desthilatê. Birêz Gul bû serokwezîr, ez jî bûm wezîrê derve. Carekê gava em ligel birêz Gul derbarê bakurê Iraqê de dipeyvîn, wî got: "Yaşar beriya du salan gava AKP di qonaxa damezrandinê de bû, te helwesta xwe di vî alî de nîşan da. Niha tu wezîrê derve yî. Tu dikarî li wê pêçê bizîvirî?" Min jî got: "Niha Amerîka dike Iraqê dagîr bike. Bûyer ewqasî bilez in em nikarin îro bi başî ji wê xaçerêyê bizîvirin, lê hêj heman helwesta min heye. Di siberojê de li bakurê Iraqê çi rû bide, divê pêwendiya Tirkiyê ligel xelkê wê herêmê baş be."

Niha piştî derbasbûna 13 salan di ser yekem gotûbêja min ligel birêz Gul derbarê wê meseleyê de, kêfxweş im ku min hingê ew fikir kir ku niha li holê heye. Niha Tirkiye ligel bakurê Iraqê û îdareya herêma kurdî pêwendiyên dostane û bihêz ava kirine û herdu aliyan sûdeke mezin ji vê dostaniyê dîtin. Ji niha ve em nikarin bêjin di siberojê de Kurdên Sûriyê wê çi bi dest bînin. Sûrî bi xwe wê biryar bidin. Şêwaz û celebê wê pêkhateyê her çawa be jî, divê Tirkiyê ligel rêveberiya li wir damezrandina pêwendiyên dostane bike armanc û divê wê peyamê jî bide Kurdên bakurê Sûriyê ku ti kêşeyeke Tirkiyê ligel wan tine. Lê divê ev rêveberiya ku li wir tê damezrandin siyasetekê neke ku serêşê ji bo Tirkiyeyê pêk bîne. Divê Tirkiye bi vî awayî mameleyê pê re bike.

**Êdî damezrandina Kurdistana duyem di heman rêyê de birêvediçe ligel damezrandina Tirkiyeya nû?**

Ev herdu prose encamên du dînamîkên cuda ne. Ango destpêkirina proseya vekirinê beramber Kurdan li Tirkiyeyê ne heman ev prose bû ku li bakurê Sûriyê ji bo destpêkirina rêveberiya herêma Hesekê ji aliyê Kurdan ve hatiye destpêkirin. Xwerêxistina Kurdan li bakurê Sûriyê ne heman ew prose ye ku li Tirkiyeyê wek proseya vebûnê ber bi Kurdan ve binav dibe. Her yek ji wan xwedî pêşîneyeke dirêj e. Kurdên bakurê Sûriyê ji sala 1930î ve, ji serdema raspardeya frensî ve doza otonomiyê kiribûn. Lê Frensayê ev yek pesend nekir. Lê vebûna ber bi kurdan ve li Tirkiyeyê encama vê kêşeyê ye ku di sala 1830î destpêkiriye. Dirêjbûna vê kêşeyê 180 sal e. Ev herdu kêşe, ku dînamîkên wan yên cuda hene, eger bi başî bên îdarekirin, dibin hokarên hev. Di vê de jî Tirkiye û bakurê Sûriyê dibin sûdmend.

> **Divê Tirkiye wê peyamê bide Kurdên Sûriyê ku ti kêşeya wê ligel wan tine.**

**Eger em di çarçoveya "kongreya neteweyî ya kurdî" de li pirsan binêrin, yekîtiya siyasî ya kurdî pêk bê, lihevkirin û danûstandin ligel yek gotara kurdî hêsantir nabe?**

Hêj ne diyar e ka ev Kurdên îro di nava 4 dewletan de dijîn, ji van welatan cuda bibin yan na. Neteweperestên ereb û partiya Baas a ku nûneriya wan dike, navçeyên kurdî li Îraq û Sûriyê, herwiha beşekî giring ji herêma kurdî li Tirkiyeyê jî weke beşekî ji "niştimana erebî" dihejmêrin. Eger ev herêm bibin welatekî ne erebî, divê çavê me lê be ku welatên erebî li dijî wan radiwestin. Eger ev herêm bi ser de jî dijîtiya wan ji aliyê welatên erebî ve bibe, ku cuda bibin, gelo dikarin yekîtiya siyasî di nav xwe de pêk bînin? Heta niha bersiva van li cem me nîne. Ji ber ku dema ev bîroke bi kar ber bi cihbicihkirinê ve diçin, em nizanin rikeberiya di navbera serokan de ber bi kû derê ve diçe. Hemû cihana erebî bi yek zimanî diaxivin, lê li ser çend dewletan dabeş bûne, êdî digihijin wê encamê ku rehenda kultûrî û neteweyî ji bo pêkanîna yekîtiyê ne bes e. Eger Kurd van hemû astengan jî derbas bikin û yekîtiya siyasî pêk bînin, hêj ne diyar e ku lihevkirin ligel Kurdan hêsantir dibe yan na. Ji ber ku ev bi wê rêveberiya ku Kurd dadimezrênin ve girêdayî ye.

**Cudahiya vê proseya ku li Tirkiyeyê ji bo çareseriya kêşeya kurdî dimeşe ligel proseyên borî çi ye?**

Cudahiya vê proseyê ligel proseyên din ev e ku:

Hikûmeta AKPê di dîroka Tirkiyeyê de yek ji hikûmetên herî xurt e. Ji her 5 kursiyên parlementoya tirkî 3 kursî di dest de ye. Eger ligel BDPê hevpeymaniyê bike, dikarin biryara referandûmê li ser destûrê bidin.

Li ser asta kesayetî, serokwezîr pirr xurt e. Eger pêwîst bike, xwe dike metirsiyê. Eger birêz Erdogan vê kêşeyê çareser neke, zehmet e ku serokatiyeke din karibe vê kêşeyê çareser bike.

Birêz Erdogan hemû giraniya xwe xistiye ser vê destpêşxeriyê.

Ev pirs bi destpêşxeriya gava aqilmend a "Komisyona Aqilmendan" bûye mala civakê. Ji aliyekî din ve bêhtirîn beşên civakê bawerî bi vê proseyê anîne.

Muxatebgirtina serokê PKKê li zindanê geveke pirr di cihê xwe de ye.

Rêberê PKKê Abdullah Ocalan xwedîtî û piştgiriya vê proseyê dike.

Baskê leşkerî yê PKKê li çiyayê Qendîlê piştgiriya gotina Ocalan dike û ragihandiye ku raspardeyên wî cihbicih dike.

Îro ew roj e ku divê kêşeya Kurdan li Tirkiyeyê çareser bibe. Eger ev prose bi ser nekeve, divê Tirkiye gellekî bendewariyê bike, heta ku sureke bayê din çareseriyê bi vî awayî hilgire.

**Tirkiye bêyî ku ligel Kurdan hevpeymaniyê bike dikare bibe hêzeke sûper?**

Ez Tirkiyeyê wek welatekî dibînim ku hewl daye bibe aktereke giring yê Rojhilata Navîn. Lê li beramberî wê du rikberên xurt hene, weke Îran û Misir. Bi ser de jî ew di krîzeke mezin de derbas dibe. Hêj Misir rêbera siyasî û kultûrî ya cîhana erebî ye. Gellek mirovên têgihîştî lê hene. Ji van nakokiyên ku li nav Ereban hebûn, Tirkiyeyê nikarîbû weke Misrê kar tê de bike.

Îran jî weke welatekî bibiryar dixwaze bê ser rêya welatên xurt. Bi dewlemendiya bi petrolê û kevneşopiya 2500 sal ya dewletdariyê. Ew jî mirovên wê yên têgihîştî gellek hene. Ew valahiya ku ji encama vekişandina Amerîkayê ji Iraqê peyda bûye, ti welatê din, ji pêvî Îranê, nikarîbû dagire.

Bi liberçavgirtina van rastiyan bersivê didim: Tirkiye bêyî ku ew ligel Kurdan hevpeymaniyê bike, dikare bigihije pirr armancên xwe. Lê dema ku ligel Kurdan hevpeymaniyê bike, bi hêsanî armancên xwe pêk tîne. Bi zehmetiyên kêmtir digihije armancên xwe. Herwiha dikare bi awayekî berdewam berjewendiyên xwe biparêze.

**Eger em mînakeke dîrokî li ber çavan bigirin, di nerîna we de pêwendiya Kurd û Tirkan li ser kîjan rêyê ye? Gelo em dikarin bêjin ku li ser rêya hevpeymaniya Idrîsê Bedlîsî û Yavuz Sultan e?**

Rojhilata Navîn di serdema Yavuz Sultan Selîm de gellekî ji îro cihe bû. Îdrîsê Bedlîsî di wê serdemê de efserekî piledar yê Yavuz Sultan Selîm bû. Di nêrîna min de, bi destpêkirina "proseya aştiyê" li Tirkiyeyê ev yekem car e ku pêwendiya Kurd û Tirkan bi arasteyeke rast de diçe. Eger ev prose pêk bê, ji bo dewleta Tirkiyeyê, ji bo Kurdên Tirkiyeyê, ji bo Kurdên din ên welatên Rojhilata Navîn û tevaya Rojhilata Navîn ev dibe wêstgeheke guhertina lîstikê, ango di vê navçeyê de rewşeke tevayî nû bi cih dibe.

*Hevpeyvîn:* ***Hêmin Xoşnaw***



# Kongreya neteweyî û sê pirsgirêk

Selahattin Çelik

Di du mehên dawî de ev dibe nivîsa min ya duyemîn li ser “kongreya neteweyî” (204/27.06.2013) û wisa dixuye ku emê hê jî binivîsin. Di nivîsa borî de ez bi zêdeyî li ser pirsgirêkên civakî û siyasî yên dîrokî yên di nav beşên Kurdistanê de rawestiyabûm. Li vir dixwazim hin faktorên sereke yên li pêşiya civînê astengker rêz bikim.

## Faktora Tirkiye û Îranê

Mirov dikarê Iraq û Sûriyê jî lê zêde bike. Lê em rewşa herduyan baş dizanin; li Başûr statûkoyek heye û li Rojava rewş û şerekî nediyar heye. Ji wê yekê, herduyên pêşî têrê dikin.

Pêdiviya wê bi şirovekirinê tine ye, ku divê kongre rasterast li dijî berjewendiyên Tirkiye, Îran û yên din be... Eger kongre bixwaze serkeftî be, ev şertê bivênevê ye. Ji ber ku yên Kurd ji azadiyê bêpar hiştine, ew dewlet in û polîtîkaya wan bingehê pirsgirêkê ye û jixwe kongre ji bo bidestxistina azadiyê dicive. Eger ev rastî pîvan be, gotinên weke “kongre ne li dijî berjewendiyên Tirkiyeyê” an jî yên din e, qet ne rast e. Ji karmendên ji rêzê heya yên herî bilind, rayedarên dewletên navborî vê rastiyê gellekî baş dizanin.

Bi vê rastiyê dewletên navborî hewl didin ku bandorê li rojev û biryarên civînê bikin; Tirkiye bi rêya Ocalan û PDKê, Îran jî bi rêya YNK, Goran û herwiha PKKê. Pirs ev e; wê kongre bikaribe ji bo Bakur û Rojhilat mafên neteweyî bide pêş û bike bername û wê zirav bike ku kuştinên Îranê li himberî siyasetmedarên kurd binxêz bike?

> **Pêdiviya wê bi şirovekirinê tine ye, ku divê kongre rasterast li dijî berjewendiyên Tirkiye, Îran û yên din be... Eger kongre bixwaze serkeftî be, ev şertê bivênevê ye.**

Ez di vê xemê de me, ka wê helwesta partiyên kurd çi bibe? Vaye qada welatparêzî û merxaziyê, fermo…

## Divê bingeh laîk û demokratîk be

Şensekî tevgera kurd heye ku ji destpêka xwe ve laîk e. Lê belê laîkbûn bi serê xwe tenê nayê wateya demokratbûnê. Kotaya (rêje/hejmar) jinan jî bi serê xwe nayê wateya demokratîkbûnê. Divê têkiliyên nav rêxistinan demokratîk bin. Divê ne tenê bi hişmendî, lê bi feraset û helwest jî demokrasî bibe diyardeyeke navxweyî. Divê civîn herî zêde li ser vê mijarê raweste û divê bikaribe ji bo çavdêrî û kirdariyê, organeke hevpar damezrîne, him jî bi şiyaneke herî zêde.

Erê divê berê kongreyê bi pêş ve be, lê li ser niheqî û êşên paşerojê, pêşerojeke zexm nayê avakirin. Ji êş û bûyerên duh bêhay û bêxem, sibeyeke ronî çênabe. Divê kuştinên siyasî yên navxweyî bêtirs bên şermezarkirin. Em bi hêsanî bedkariyê li gotina “şehîd” dikin. Şehîdên herî mezin ew însanên bêguneh in, ku ji ber bîrûbaweriya xwe ji aliyê partiyan/partiyên xwe ve hatine kuştin. Eger kongre di vê bareyê de biryareke girêder nestîne, wê ji mebesta xwe pirr dûr be. Gellek malbat bi salan di nav êş û kesereke mezin de li benda vê rehmdarî û dadmendiyê ne. Kongre di bin vî barî de ye; xwejêvedizîn çênabe, tenê bi gotarên zêrîn jihevbawerî, aştiya navxweyî û demokrasî nayê.

## Pîvana beşdarbûnê çi ye?

Rast e ku derfet tine ye ku her kes tevlî civîne bibe. Bila be, lê dîsa jî di mijarê de niheqiyek û tevliheviyek heye.

Ji sedî 90ê beşdarên civînê nûnerên partî û rêxistinan in. Û eger em rastiyê bêjin, zêdeyiya wan bi PKKê ve girêdayî ne. Herçiqas PKK bi kirdarî xwedî pêşaniyê ye jî, di vir de çewtiyeke mezin heye. Dibe ku ev tişt bi ya PKKê be û li xweşiya wê be. Lê bi ya min, bi vê helwestê PKK dar li piyê xwe dide. Talûke heye ku bi serê xwe bimîne. Nav kongreya netewî be jî, dibe di naveroka konferansên PKKê de bimîne.

Em werin rêjeya ji sedî 10ê ya ji bo kesên serbixwe. Ma ev rêje têrê dike? Ji ber ku zêdeyiya civaka kurd û rewşenbîrên wê bi rêxistinan ve ne girêdayî ne. Kî wan diniqîne? Bersiv: Yên serdestê ji sedî 90î. Tişta dibe weke xeml û şanoyeke kenogirî ye.

> **Bi gotinên eşkere û gebûxwestinê dibêjim: Ji kesên ku ji rêxistinên PKKê tên, bi sedan caran zêdetir keda me di tekoşîna gelê me de heye.**

Ji bo bi sedan kesên weke xwe, bi gotinên eşkere û gebûxwestinê dibêjim: Ji kesên ku ji rêxistinên PKKê tên, bi sedan caran zêdetir keda me di tekoşîna gelê me de heye. Û eger rê hebe, dîsa ez bawer im ku ji wan kesan gellekî zêdetir wê tevkariya me li doza neteweyî bibe. Lê dev jî beşdarbûnê û tevkariya me berdin, lîstik wisa bi hunerî û konetî tê lîstin, em nikarin xwe nêzîkî deriyê kongreyê jî bikin, weke ku em zarokên jinbavê bin.

Ji serpêhatiya xwe dinivîsim; gava rêxistinê piyê yekî dişemitand, bi dehan kes weke dûpişkan diketin dorê, ku cihê wî bigirin. Heya ku rojekê dor bihata wan jî. Ti kesî nedigot, “ez cihê ‘hevalê’ xwe nagirim”.

Îro li ber deriyê kongreyê jî heman bêhna genî tê. Kongre bûyereke yekane ye û bi erkeke pîroz barkirî ye. Tê de cihgirtin bêguman serfiraziyeke mezin e. Ramanên cuda û pirreng şertên serkeftina civînê ne. Divê mirov ne şelaf û leşkerê partiyan be, lê yê neteweyê be. Divê mirov bi ramanên xwe biaxive, nê bi fermanan.

Şik û tirs heye ku bi vê naverokê kongre mîsyona xwe neleyize û bibe qada nakokî û xweperestiya partiyan û pêşbirkiya mezinahiya serokên wan, ku êdî zerengiyên dinyayê têra mezinahiya wan nakin!

Çi be jî, hêvî û bendewariya min ev e ku civîn bêyî astengiyan pêk be, tê de hestyariya neteweyî û demokratîk serdest be û bi ser bikeve, û bi vê hişmendî û hestyariyê bigihije biryar û organên hevpar.

# Çima Îsa Hiso kuştin?

Helîm Yûsiv



Bersiva vê pirsê di nivîsa Îsa Hiso ya dawiyê de pirr zelal e. Dema mirov vê nivîsê bi hûrbînî dixwîne, xuya dike ku xwediyê wê yek ji wan birêveberan e ku mîna endezyarekî projeya xweseriya Kurdan û birêveberiya herêmî ye, ya ku ev demeke hem çapemeniya erebî û hem jî ya kurdî pê mijûl e. Wisa jî nêzîkbûna Kurdên Rojava ji avakirina birêveberiyeke xweser ve, dengekî xurt vedabû, ji Amerîkayê bigire, hetanî bi Tirkiyeyê, wisa jî ji rejîma Sûriyê bigire hetanî bi hêzên siyasî yên rikberiya ereb û hetanî bi komên çekdar yên îslamî ku dest bi êrişên xwe yên xwînî kirin û heta niha ew êriş û hovîtiya li dijî Kurdan berdewam dike. Bêyî ku ez dest bidimê, min nivîsa Îsa Hiso ji erebî wergerand kurmancî. Eger mirov piştî xwendina vê nivîsê rasterast kujerê wî destnîşan neke, lê dîsa jî mirov dikare sedemên kuştina wî bi rehetî nasbike. Nivîs ev e:

***Sazkirina birêveberiyeke herêmî û demokratîk li herêma Rojavayê Kurdistanê gaveke giring û bi pêş ve ye***

***Miletê kurd li Rojavayê Kurdistanê derbasî qonaxeke nû bûye. Di vê qonaxê de bi gellek pirsgirêkan re rûbirû maye. Wisa jî gellek dozên ku di dirêjayiya dîrokê de, li Sûriyê, bi ser hev de kom bûne, hene. Ji bo em karibin van pirsgirêk û aloziyan çareser bikin, pêdiviya me bi karekî pirr û bi xebateke hevbeş heye. Miletê kurd, li Sûriyê, di hemû serdemên derbasbûyî de ji hêla hikûmetên cihê ve dihat birêvebirin û rojekê ji rojan derbarê çarenûsa xwe de nebibû xwedî biryar. Vê rewşê bandora xwe avêtibû ser vîna miletê kurd û ew ji ser rê dagerandibû, bi awayekî ku herdem berjewendiyên wan hikûmetan di ser berjewendiyên xwe re digirt. Ji ber vê, jidayikbûna daxwaza miletê kurd ya ku bi rêya sazkirina birêveberiyeke herêmî û demokrat, da ku karibe di vê qonaxê de ew xwe birêvebibe, pêşketineke gellekî giring e. Hem ji hêla dewletên herêmê ve û hem ji hundir (hundirê Sûriyê) ve, wê gellek zehmetî di rêya vê pêşketinê de derkevin.***

> **Miletê me îro biryar daye ku ji xwe re birêveberiyeke xweser avabike.**

***Zêdeyî sed salî ye ku ev milet raserî zilmûzorê tê û rojekê ji rojan qedera xwe bi dest xwe ve neaniye. Ewqase sal in ku miletê me di vê rewşê de dijî, îro biryar daye ku ji xwe re birêveberiyeke xweser avabike, ev bi serê xwe pêşketineke û gaveke mezin e. Em hemû dizanin ku beriya 19ê Tîrmeha 2012ê li Rojavayê Kurdistanê rojekê ji rojan miletê kurd wekî îro nebibû xwediyê vîna xwe û rejîma Baasa şovenî ew vîna wî ji dest girtibû. Îro miletê me biryar daye ku ew bi xwe xwe biparêze. Pêkanîna vê biryarê jî di herêmên Kurdan de, di rêya Hêzên Parastina Gel re tê kirin. Herwisa di rêya hêzên leşkerî yên ji bo parastina xelkê û dezgehên giştî û yên taybet re. Destanên qehremaniyê yên ku Hêzên Parastina Gel li herêmên Rojavayê Kurdistanê pêşkêş kirin, bûn sedem ku şûnûşopa wê zordariyê bilezûbez ji holê rabe û vîna neyarên gelê me yê kurd hilweşe û hêdî hêdî vîna gel bi xwe li şûnê cih bigire. Ev bi xwe ji bo hemû pêkhateyên herêmê gaveke demokratîk e, giring û ber bi pêş ve ye. Ev pêşketin jî bi serdestiya gel ya di rêya birêveberiya xweser ya demokratîk û hevbeş ve tê cihbicihkirin.***



Îsa Hiso

……………………………

Nivîsa dawî ya Îsa Hiso, ku di rûpela wî ya facebookê de, beriya şehadeta wî bi çend seetan belav bûye. Dem: 30.07.2013.

Oxir be Kurdê dilsoz û têkoşerê jidil Îsa Hiso. Cihê te bihuşt be.

# Felekedîn wiha bû

Ako Mihemed



Dengekî bilind ji deriyên otombîlên wan dihat, gava ku dihatin girtin, ne wek dengê yên nû, ji ber ku kevin bûn. Lê Felekedîn Kakeyî ti gazinda wî nebû. Herwiha jî buhiştî Cewher Namiq. Herduyan gellek zehmetî kişandin. Tomara wan bi pêşmergetiyeke rast dagirtî bû, lê kêmtirîn gazinda bêzariya wan weke ya wan kesan nebû, ku herdem pitepita wan bû: ***"Ez westiyame, kengî ev mûçe, xanî û milkên min hêjayî min in. Tiştek ji min re nehatiye kirin."*** Ji bo min pêşmergeyên bi bîrûbaweriya serdema çiyê firîşteyên baş in û qertalên serxwebûna Kurdistanê ne, heta astekê ku ez bi qasî Kurdistanê ji wan hez dikim. Lê hindek ji wan ji bo malê dinyayê lavan dikin (Ne ku ji nebûnê, lê belê ji bo bidestxistina zêdetir). Hest dikim ku wêneyên xwe yên xweşik têk dibin. Ev herdu pêşmerge gellekî bi xweşikî jiyan. Gellekî jî bi serbilindî koça dawî kirin. Ji ber vê jî pirr şanaziyê dikim ku naskirina min ligel herduyan hebû.

Beriya ku em hevdu bibînin û nasbikin, min ji herduya hez dikir. Kak Cewher Namiq, bi gotina bavê min û mirovên min ên din, wek pêşmergeyekî bi aram û zana û çareserkerê kêşeyan hatibû naskirin. Vêce ji gotina xelkên devera Badînan, min nas kir ku berê wiha bû. Cewher Namiq ji ber şehîdbûna pêşmergeyekî xurt li ser piyan şer kiriye. Min Felekedîn Kakeyî jî berê bi rêya nivîsandinê naskiribû.

Kak Cewher, piştî ku ji hemû postên dewletî û partîzanî dûr ket, bi taybetî jî di çar salên dawiya temenê xwe de, pêwendiyeke berdewam di navbera me de pêkhat. Min kak Felekedîn jî di sala 2000î de li Şamê naskir. Li wir du rojan wek dirêjaya rojekê em bihevre bûn. Vêce her li ser behsa roja rojnamegeriya çiyê û serkêşiya hinek ji keç û lawên pêşmergeyan li biyaniyê bû, bi sedema şikestina 1988ê, heta digihije asoya pêkanîna rojnamegeriyeke azad û pêşketî li Başûrê Kurdistanê.

**Di dema şerê birakujiyê de, herdem di bîra min de ye ku du kes beşdarî şerê birakujiyê nebûn, ew jî Felekedîn Kakeyî û Dr. Kemal Fûad bûn.**



Felekedîn Kakeyî û Şêrko Bêkes

Dema ku min wêneyên Felekedîn Kakeyî didît, bi rext û tifinga pêşmergetiyê, li ser motorsiklêtekî, di nav nivînin sade de, li biniya kevirekî, qelem di dest de, li ser çenteyekî hişk, di valahiyekê de. Lê yek rojê ji axaftinên me, tevî vê jî, nebûne li ser pere, milk û mal, yan heval û biraderên wî. Bi rastî wê demê ev yek ji bo min cihê balkêşiyê bû. Herwiha niha jî.

Tê bîra min, wê dema ku li Hewlêrê dengê şerê birakujiyê jiyana hemû xelkê tije bêzarî kiribû, wî zincîra sergotarekê di rojnameya Xebat de bi erebî li ser aştî û lihevhatina PDKê û YNKê nivîsand, ku li cem hinek kesan ew sawîr bûn. Lê Felekedîn Kakeyî bi wê yekê naskirî bû ku hinek caran gotinên nenaskirî li gor reyalîteya jiyayî dikirin. Lê demek dirêj derbas nedibû ku kar derdiketin û dibûne rastî. Lewma jî ku nûçeya koça dawî ya wî di beşê erebî yê malpera PUKmedia de min dît, ku nivîsandibûn bîrmend Felekedîn Kakeyî koça dawî kir, min nedît wek pesindaneke zêde ye bo kak Felekedîn. Ji ber ku kesê ku di nivîsandin û gotinên wî de hûrbîniyê bike, vê yekê jê re zêde nabîne.

Taybetmendiyeke jiyana wî ya siyasî hebû; di dema şerê birakujiyê de, herdem di bîra min de ye ku du kes beşdarî şerê birakujiyê nebûn, ew jî Felekedîn Kakeyî û Dr. Kemal Fûad bûn. Wek siyasetmedar û nivîskar, di warê birakujiyê de min tiştek ji wan nedît. Lê ji bo aştiyê min gellek ji wan dît. Bi taybetî ji Felekedîn Kakeyî.

Gellek caran Felekedîn Kakeyî telefonên dirêj ji min re dikirin. Ew telefon hemû ji bo dana bîrokeyekê bûn derbarê babeteke kultûrî, yan ji bo babeteke neteweyî, yan ji bo naskirina kesekî jêhatî bû ji bo Rûdawê. Gellekî baweriya wî bi Rûdawê hebû, lewma hez dikir ku babetên baş ji bo Rûdawê pêşniyar bike. Du rojan beriya koça dawî ji min re got ***"Ako, televizyona we gellekî gellekî tê temaşekirin. Ew pirr girîng e. Divê hûn hewl bidin ku herdem bandoreke we ya niştimanî ya kûr hebe."***

Felekedîn Kakeyî kesekî enseklopedîk bû. Di dema zuhabûna raman û nemana kûrbûna bîrbirinê de, di dema kêmtir pêkanîna siyasetmedar û rojnamevanên xoşewîst de, ev taybetmendî hemû tê de bûn. Bi rastî koça kak Felekedîn Kakeyî ziyaneke mezin gihand rewşenbîriya kurdî.

***Dema ku min ev gotar dinivîsand, nûçeya koça dawî ya helbestvanê navdar Şêrko Bêkes gihîşte min. Xemeke din jî kete ser xema koça dawî ya Felekedîn Kakeyî. Ew herdu yek li dû yekî bûne wezîrê rewşenbîrî yên Herêma Kurdistanê. Bîranîna wan bixêr û gora wan tije ronahî be.***

# Stratejiya medyayî ya PKKê

Wladimir van Wilgenburg



Li navçeyên kurdî yên dorpêçkirî yên wek Tel Eran û Tel Hasil, ku dikevin deştên Helebê, dora 20 hevwelatiyên sivîl di encama pevçûnên di navbera al-Qaîde û hêzên kurdî yên ser bi PKKê hatin kuştin. Herwiha dengo hene ku bi sedan Kurd hatine revandin. Ev zanyarî bilez ji aliyê PKKê ve hatine belavkirin, da ku piştevaniya kolana kurdî bi dest bixe. Her çiqasî pirraniya wan dîmen û vîdyoyên ku belav dibin ne rast in û hatine çêkirin.

Şer li Tel Eran û Tel Hasil di roja 28.07.2013ê de derket. Bêhtir jî dixuye ku sedema derketina şer ew bû ku YPGê hewl da navçeya Serê Kaniyê bixe jêr kontrola xwe. Çarmedora herdu bajarên Tel Hasil û Tel Eran bi Erebên Helebê dorpêçkirî ye, lewma jî pirr hêsan e ku êrişî ser wan bên kirin. Behsa wê yekê jî tê kirin ku gund û bajarên kurdî yên din ên deverê, ku pirraniya wan piştgiriya PKKê dikin, ji aliyê Erebên deverê bên êrişkirin. Pirr hêsan e ku êrişî wan navçeyan bê kirin, ji ber ku navçeyên dorpêçkirî ne.

Hem partiyên kurdî yên ku li dijî PKKê ne û hem ewên ku pê re ne, mikur hatine ku dora 20 Kurd hatine kuştin û dora 350 heta 400 kes jî hatine revandin. Her çiqasî grûpên ser bi al-Qaîde hewl didin ku bêjin ew ne li dijî Kurdan in û tenê li dijî “PKKa komûnîst” in, lê pirraniya partiyan (tew ewên ku dijî PKK ne) kiryarên ku al-Qaîde li dijî sivîlan pêk anîn şermezar kirin. Ango wan di navbera al-Qaîde û PKKê de, PKK hilbijartin.

Gellek dîmenên ku van rojan hatin belavkirin, dîmenên wan kuştinan bûn ku berê li dijî Kurd û Ereban hatibûn kirin. Gellek ji wan kiryaran ji aliyê hêzên Esed li navçeya Banyas hatibûn kirin. Ew vîdyo jî ku wek “kuştina Rojava” li ser înternêtê hat belavkirin, vîdyoya bombebarankirina gundê Tel Hedad yê kurdî bû, ku ji aliyê hikûmeta Esed pêkhatibû û di encama wê de 16 kesên sivîl hatibûn kuştin û di Nîsana 2013ê de rû dabû. Lê wê demê PKKê tiştek derbarê wê komkujiyê de negot, ji ber ku ne di berjewendiya wê de bû ku behs bike.

Niha kuştina 6 kesên sivîl li Amûdê ji aliyê YPGê ve bi tevahî hatiye jibîrkirin û berê hemû Kurdan li ser şerê Rojava ye. Jixwe ev ew yek e ku PKK bi rêya malperên civakî bengewaziya wê dike û belav dike. Tew medyaya tirkî jî ew vîdyo ji ajansa Firat ya ser bi PKKê wergirtin û bêyî lêkolînkirina rastî yan nerastiya dîmenan, belav kirin.

Ango PKK serkeftî bû û bandor li ser van kir: Yekem; medyaya tirkî, bi rêya rojnamegerên ku di medyaya tirkî de kar dikin û alîgirên PKKê ne. Duyem; medyaya kurdî, ya ku wiha nîşan da ku tiştê li wir rû dide şerê Kurd û Ereban e. Sêyem; Medyaya rojavayî, ew jî bi rêya saziyeke xêrxwaziyê wek rêxistina çavdêriya mafên mirovan li Sûriyê, ku pirraniya raportên wê di qezenca PKKê de ne. Çarem; Rûsya û medyaya rûsî ku wiha kir ku pêwendiyeke baş di navbera PKKê û wezareta derve ya Rûsyayê de dirust bibe.

Ev jî nîşan dide ku partiyên kurdî yên din ên Sûriyê xwedî şensekî kêmtir in ku bikarin bandorê li ser raya giştî ya kurdî bikin. Nemaze jî gava dizanin ku şer di navbera al-Qaîde û Kurdan de ye, her nikarin wê bandorê bikin. Ango diyar e ku stratejiya medyayî ya PKKê ji bo kontrolkirina deverên kurdî yên Sûriyê serkeftî ye û partiyên kurdî yên din jî nikarin tiştekî bikin.

# LUKOIL çavên xwe berdane nefta Kerkûkê




Lukoil, ku şirketa herî mezin ya taybet ya hilberîna neftê ya Rûsyayê ye, dixwaze li Kerkûkê petrolê derîne. Bi vê armancê hikûmeta Rûsyayê serokwezîrê Îraqê Nûrî Malikî li ser daxwaza Lukoilê agahdar kir.

Li gor ajansa Rianovostî ku xwe dispêrê IraqiNews, hikûmeta Rûsyayê beyî ku agahdariyên berfireh dibe, daxwaza Lukoil bi awayekî fermî ji Malikî re gihand.

Nurî Malikî di serdana xwe ya Moskow ya di Hezîrana 2011ê de bi serokê Lukoil, Wagit Alekperow, re rûniştibû. Di hevdîtinê de serokwezîrê Îraqê derbarê razemeniyên ku li welatê wî dikarin werin pêkanîn de agahdariyên berfireh dabûn Alekperow.

Ji hêla din ve, di Çileya îsal de hikûmeta Malikî diyar kiribû ku ew dixwazin derbarê zeviyên neftê yên li Kerkûkê de bi şirketa mazin ya brîtanî BP re peymanê imze bikin. Zeviyên petrolê yên mijara gotinê dikevin herêmên Kerkûkê yên cihê nakokiyan. Yekemîn car di sala 1927ê de li wir neft hatibû dîtin û derbarê Kurdistanîbûna wê deverê de Bexda li dijî daxwaza Hewlêrê derdikeve. Niha li wir rojane 260 hezar varêl neft tên deranîn. Di destpêka salên 2000an de ev hejmar 900 hezar varêl bû. Li gor agahdariyên nefermî, BP soz daye Bexdayê ku di nava 5 salan de hilberîna neftê ya li wê herêmê rojane bigihîne 700 hezar varêlan.

# Dexla Başûr îsal duqet bû



Aram Kakexan *Hewlêr*

Digel ku berhema dexla îsal li Başûrê Kurdistanê li gor par duqet e jî, lê ev dexil hê jî têra pêwistiya heyî nake.

Par bi sedema zuhabûnê, berhemanîna genim li Başûrê Kurdistanê kêm bû. Di tevaya embaran de 226 hezar ton genim hatin wergirtin. Ji destpêka Pûşbera îsal ve cotkar dikarin genimê xwe bibin embarên kirrînê. Heta niha bêhtir ji 550 hezar ton genim û 31 hezar ton ce ji cotkaran hatiye wergirtin.

Şêwirmendê aborî yê Wezareta Bazirganî û Pîşesazî yê Hikûmeta Herêma Kurdistanê, Faris Mecîd, diyar kir ku heta roja 29ê Pûşbera îsal di tevaya embarên herêma Başûrê Kurdistanê de 559 hezar ton genim hatine wergirtin, ji van 210 hezar ton ji Hewlêrê, 136 hezar ton ji Silêmaniyê û 212 ton jî ji Duhokê bûn. Lê ev hejmar hê jî têra pêwîstiya welatiyên Başûrê Kurdistanê nake. Li gor daneyan, pêwistiya welatiyên li herêma Kurdistanê bi 700 hezar ton genim heye.

Hikûmeta Herêma Kurdistanê tona genimê baş yê pile 1 bi 792 hezar Dînarî, ya pileya 2 bi 682 hezar dînarî û genimê pileya 3 jî bi 572 hezar Dînaran ji cotkaran dikire. Herwiha serê tona ce jî bi 572 hezar Dînarî tê wergirtin.

Li gor salên din berhemanîna ce ya îsal jî zêde bû. Serokê şaxê Hewlêrê yê Yekîtiya Cotkarên Kurdistanê Mihemed Deştî bal kişand ser zêdebûna dexlê û diyar kir ku "par berhema ce bi sedema kêmbûnê nehat embaran. Lê îsal tenê cotkarên Hewlêrê 28 hezar ton ce dane embaran."

# Dema hêbên serêşê fêde nekin



Gellek kes carcaran yan jî demdirêjî serêş bi wan re peyda dibe. Li gellek malan jî ji ber vê yekê hebên serêşê di dolaban de hazir in. Dema ev rûdan pêk tê, gellek caran di cih de mirov dest diavêjin hebên serêşê. Lê hinek caran hebên serêşê jî fêde nakin û serêşa mirovan berdewam dike. Sedemên vê yekê yên cude hene. Hokarek jê dibe ew be ku yê serêş pê re heyî ji pêdiviya hebê ya heyî hindiktir heb ango derman xwaribe. Ji ber vê yekê pêşiya hûn heban bixwin, li receteya di pakêta hebê de binêrin, ka dive hûn çiqas an çend heban û bi çi şêweyî bixwin. Ihtimala wê yekê jî heye ku ew heba hûn dixwin li we nayê. Di rewşeke wisa de pêwist e hûn biçin cem bijîşkê xwe û ew hebek din ji we re binivîse. Ya giring ew e ku di heman demê de hûn hebên ji hev cûda yên li dijî serêşê nexwin. Herwiha eger li ser hev rojane serê we biêşe û heb êdî fêde nekin, dibe ku nexweşiya mîgren bi we re hebe. Pêwist e tedawiya vê nexweşiya demdirêjî bijîşk bikin. Ji hêla din ve rêbazên sirûştî yên bêheb yên ji bo serêşê jî hene; bêhnvedan, derketina derve ya li ber hewaya paqij û vexwarina gellek ya avê.

### Metirsiyên serêşê

Carcaran xwarina hebên serêşê ne pirsgirêk ye. Lê belê eger bi demdirêjî ev heb werin xwarin, êdî di nava demê de ev heb bi xwe jî dikarin serêşê ji mirovan re çêbikin. Li gor pisporan, di nava mehekê de divê zêdeyî deh rojan hebên serêşê neyên xwarin. Herwiha li pey hev zêdeyî sê rojan jî divê hebên serêşê neyên xwarin. Eger bi demdirêjî bi we re serêş çêdibe, serî li bijîşkê xwe bidin. Ji ber hebên serêşê tenê pêşiya êşê digirin lê nikarin çavkaniya ku êş jê tê sax bikin.

### Serêş, heb û alkol

Ku we hebek serêşê xwaribe, divê hûn alkolê venexwin. Naxwe ji ber tevlihevbûna madeyên di nava hebên serêşê û alkolê de laşê mirov dikare pêrgî metirsiyên cûrbicûr were. Kezeb hem dermanên êşê û hem jî alkolê belav dike. Bi vî awayî tehda li kezebê dibe û karê wê dibe duqat.

### Hebên serêşê di dema ducanîbûnê de

Di dema ducanîbûnê de pirraniya dermanan ji tenduristiyê re nebaş in. Ji hêla din ve bi taybetî di hersê mehên destpêkê ducanîbûnê de serêş li gellek jinan peyda dibe. Dema di vê rewşê de serêş peyda dibe, divê kesên ducanî bêhna xwe vedin. Herwiha germnixumandin, gera li ber hewaya paqij, razan û vexwarina gellek ya avê jî dikarin pêşiya serêşê bigirin. Ku digel van hewildanan jî serêş nesekine, wê demê hebek dikare were xwarin. Lê ya herî baş ew e ku jinên ducanî her ji destpêkê ve ligel bijîşkê xwe di nava pêwendiyan de bin û beriya xwarin heban şewira wan bê kirin. Hêjayî gotinê ye ku nebaş e eger dermanên mîna Acetylsalicyl û Ibuprofen di dema ducanîbûnê de werin xwarin.

# Lêdana dil işareta felcê ye

Lêdana neasayî ya dil dikare pêşagahdariya nexweşiya felcê ya siberojê be. Dema ku lêdana dil bibe sedema aciziyê, pêwiste yekser mirov biçe ba bijîşkekî, da ku sedemên vê yekê bên zanîn. Li gor pisporan, lêdana neasayî ya dil li gor mirovan diguhere û dikare bi hêz, zû, yan jî zêde hêdî be.

Sedemên lêdana dil ya neasayî dikare stres, kêmgerr, derman, an jî nexweşiyên cûre bin. Bi giştî ev lêdana dil ya neasayî dikare pêşagahdariya hinek nexweşiyên ku rû bidin be, lê bi pirranî ev yek nîşana felçê ye.

Ji bilî hokarên giştî yên li jor hatine rêzkirin, rewşên nexweş yên derûnî, kişandina çixareyê, vexwarina çayê, qehwe, vexwarinên avên enerjîk, ducanîbûn, menapoz û hinek dermanên li dij sermayê jî dikarin sedemên lêdana neasayî ya dil bin. Kêmxewî jî dikare bibe sedema lêdana dil ya ku mirov pê aciz bibe. Herwiha divê di wê rewşê de mirov hay ji xwarina xwe jî hebe û xwarina zêde nexwe.



## Xaçepirs

**Çeperast:** **1-** Li Kurdistanê çiyayek – Wêranî, xirabûn, talanî. **2-** Ferman, pêkirin – Rewşa xeter, rewşa aloz – Alet, hacet. **3-** Raza, nivist, xwe dirêj kir – li Tirkiyê kanalek televizyonê – Cûreyekî hirmîyan, hirmîyên bejî. **4-** Aletek muzîkê (berepaş) – Deng, qarewar – Kizwan, çerezek ku jê sabûn çêdibe. **5-** Hêwan, balkon. **6-** Çerm, zik – Temaşe neke, çavên xwe bigire (berepaş). **7-** Cûreyek pişkokan, pişkokên ku dikevin hev – Bangkirina zilaman. **8-** Hejmarek – Fêkî, fêkîyên darane (berepaş). **9-** Navekî jinan (berepaş) – Notayek muzîkê. **10-** Cahilî, xeşîmî (berepaş) – Şîfre, hejmarên dizî û nehênî.

**Serejêr:** **1-** Xwarina berî taştê, serê sibê xwarina ji bo kişandina cigarê – Bê av, ziwa. **2-** Hawar, feryad – Destûr, rêvekirin. **3-** Axa spî wek kilsê – Bajarekî bakurê Kurdistanê. **4-** Ciwamêr, destvekirî, çavtêr (berepaş) – Da ser rê, nema tê – Çêbû, hat dinyayê (berepaş). **5-** Şil, ne hişk, nerm – Kesê li mizgeftê bang dide, xoce. **6-** Notayek muzîkê – Tirsonek, bêzirav (berepaş). **7-** Du tîpên bêdeng – Kewa mê (berepaş). **8-** Koma rêwîyan, koma çûn û hatinê. **9-** Bi zimanê Ewrûpî "gotar, nivîs" – Notayek muzîkê. **10-** Du tîpên "mat" ê – Qirkirin, tevkujî. **11-** Par, parçe, qet. **12-** Pê por tê rastkirin (berepaş). **13-** Rengê axê. **14-** Meha neh (9) an. **15-** Navekî zilaman. **16-** Kêlek, kenar, hêl (berepaş).

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | ■ | | | | | | | | ■ | |
| 2 | | | | | ■ | | | | | | | ■ | | | | |
| 3 | | | | | | ■ | | | | ■ | | | | | | |
| 4 | | | | | | | ■ | | | | ■ | | | | | |
| 5 | | ■ | | ■ | | | | | | | | | | | | |
| 6 | | | ■ | | ■ | | | | | | | | | | | |
| 7 | | | | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 8 | ■ | | | ■ | | | | | ■ | | | | | | | |
| 9 | | | | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 10 | | | | | | | ■ | | | | | | | | | |

### Bersivên hejmara 209

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | Ş | A | H | M | E | R | A | N | ■ | A | L | Î | K | A | R | Î |
| 2 | E | R | Ê | ■ | R | Î | R | E | H | ■ | A | R | A | F | A | T |
| 3 | H | Î | L | E | B | A | Z | ■ | R | Î | ■ | A | M | E | D | Î |
| 4 | W | ■ | Î | F | A | D | E | K | I | R | I | N | ■ | C | O | T |
| 5 | E | D | N | Î | Z | ■ | M | A | K | O | | | | | | |
| 6 | T | R | ■ | D | ■ | S | ■ | R | ■ | B | | | | | | |
| 7 | ■ | E | B | E | D | Î | Y | E | N | ■ | | | | | | |
| 8 | A | M | O | Q | ■ | T | E | S | Î | R | | | | | | |
| 9 | X | A | T | ■ | R | E | W | A | N | Î | | | | | | |
| 10 | A | N | Î | T | E | M | ■ | T | E | X | | | | | | |

Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî? Ji me re bişîn: info@rudaw.eu



# NASYAR WÊ BIBE PISPORÊ KOMPUTERÊ

Nasyar li Almanyayê li bajarê Duisburgê hatiye dinê. Nasyar niha heşt salî ye. Ew niha diçe dibistana seretayî. Ew li malê bi kurdî û almanî dipeyive. Wekî din dikare aramî jî binvsîne. Ew pirr ji komputera xwe û muzîkê hezdike. Ew li malê carbicar li gîtarê jî dixe. Du xuşkên Nasyar hene û ew hertim bi wan re kurdî dipeyive.



# Hesp

Hesp ji malbata zebra û keran ne. Navê hespên mê mehîn e û ji bo biçûkên hespan jî canî tê gotin. Hesp gellekî di karûbarên mirovan de arîkariya mirovan dike. Gellek caran ji bo siwarbûnê jî tên bikaranîn. Gellek cûreyên hespan hene. Rengên mûyê hespan guhertî ne. Di nav şêweyên hespan de yên herî naskirî hespên erebî û îngilîzî ne. Hesp ka, giya, baçîk, kapek, nanê hişk, sêv û hwd. dixwin. Mehîn 11 mehan ducanî dimînin û piştî 11 mehan caniya tînin. Canî piştî çend hefteyan dest bi xwarina giya dikin, lê heya salakê car bi car şîrê diya xwe jî vedixwin.



Wêne temam bike, paşê birengîne






## Şertên ZARDOKU

Tenê hejmarên 1 heya 6 bi kar bîne, lê nabe hejmarek du caran di yek rêzê de bê bikaranîn: ji çep ber bi rast, an jî ji jor ber bi jêr.

Bersiva ZARDOKU